5

تۆپبارانی ئێران هەڵوەدای کرد

## مام قادر دڵی لای کەوەکانیەتی



## 'Zarokên keviravêj' dibin stêrkên sporê

Ciwanekî kurd berê xwe dide kampa NBA ▶Rûpel 8




# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK | Hejmar / Nr. 106 | 28 Tîrmeh / Juli 2011


## "Mirov di 17 rojan de fîlm dikişîne!"

Derhênerê kurd Umur Hozatli yek ji wan kesan e ku bi derfetên xwe hewl dide sînemaya azad pêş bixe. Hozatli ligel çend hevalên xwe, bêyî ku ji dezgeh û saziyekê alîkarî bigire, yekem fîlmê xwe yê metrajdirêj bi navê "Azadiya Wenda" kişand. Fîlmê Hozatli atmosfera salên 90î ya ku bi kuştin û girtin, îşkencekirina Kurdan derbas bû û tirs û sawa ku JITEMê di nava gel de kûr kiribû, tîne ser perdeya spî. ▶Rûpel 9




# Kurd dîsa şerê Kurdan dikin



Di şerê dijî PJAKê de Kurdên grûba Ensar el-Îslam dane pêşiya pasdarên Îranê

4 / 5 »







## Banû hîn jî winda ye

Hejmara miriyên komkujiya hefteya borî li paytexta Norwec Osloyê gihiştiye derdorê 80 kesan. Lê îhtimal mezin e ku keçeke kurd jî di nav miriyan de be. Li kampa ciwanên Partiya Karkerên Norwec ku kujerê norwecî li ciwanan teqand, di nav 700 kadroyên wê partiyê de 10 ciwanên Kurdên Norwecê jî hebûn. Ji roja bûyerê ve keça kurd, Banûya 17 salî, jî winda ye. Şahidên bûyerê çavdêriyên xwe ji Rûdawê re vegotin. ▶Rûpel 7






Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## Beriya bu birayê xwe bibîne mir

# Daxwaza wî ya dawî pêk nehat



**Koln (Rûdaw) -** Rûdawê beriya du hefteyan (hejmar 104) derbarê Şahîn Mohammad Salehê ji Başûrê Kurdistanê, ku ji ber peydabûne tûmorekî di serê wî de li ber mirinê bû, raportek belav kiribû. Bi nefes û hêza xwe ya dawî Şahîn daxwaza xwe ya dawî gihandibû dost û pizîşkên xwe. Daxwaza Şahîn ew bû ku beriya mirinê birayê xwe yê li Başûrê Kurdistanê careke din bibîne. Komela kurdan a Munchenê jî ketibû nav hewldanên pêkanîna vê daxwaza Şahîn û nameyek ji Balyozxaneya Almanyayê ya li Hewlêrê re şandibû û rewş û daxwaza Şahîn a dawî ji wan re rave kiribû û daxwaza alîkariyê ji balyozxaneyê kiribû. Balyozxaneyê jî bersiva erênî dabû komela kurdan û diyar kiribû ku ew ê vîzeyê bidin birayê Şahîn, daku bê Almanyayê û birayê xwe bibîne. Lê di dawiyê de diyar bû ku birayê Şahîn ji xwesteka xwe poşman bûye û êdî nexwest were Almanyayê û birayê xwe di vî halê xirab de li ber mirinê bibîne.

Şahîn Mohammad Saleh 15ê tîrmehê li nexweşxaneyeke bajarê Munchenê çû ser dilovaniya xwe. Piştî merasima ayînî li Mizgefta Ahmedê Xanî li Munchenê, cenazeyê Şahîn Mohammad Saleh 18ê tîrmehê bi alîkariya Kurdên Munchenê bo Başûrê Kurdistanê hat şandin.

# Partiyên Rojava konferanseke kurdî - kurdî amade dikin

**Hêvîdar Ehmed** Hewlêr

Partiyên kurdî yên Rojavayê Kurdistanê li ser projeyekê ji bo dema piştî nemana rêjîma Beşar Esad li Sûriyê hêjî ne hevdeng in. Kesayetiyeke serbixwe ya Rojavayê Kurdistanê jî dibêje ji bo yekkirina helwêsta kurdan pêdivî bi konferanseke kurdî-kurdî heye, ji ber ku yekkirina dengê kurdan kêşeya herî mezin e.

Bêtir ji 4 mehan li ser xwepêşandanên Sûriyê derbas dibin, dijberên rêjîma Esad heya niha çend kongre û konferansek ji bo behskirina rewşa niha û pêşeroja Sûriyê girêdane, lê Kurd herdem bi destê vala ji wan hatine derve û pir caran jî ji wan vekişiyane, ji ber ku hatine marjînalîzekirin.

Dr. Rezwan Badînî ku weke kesayetiyeke serbixwe ya kurd tê naskirin, heya niha tevî 3 konferansên opozisyona Sûrî li Tirkiyeyê bûye. Li gor Badînî "Tirkiye ji pişt perdeyê piştgiriya Birayên Musulman ên Sûriyê (Îxwanên Musulman) dike, lê ji Kurdan ditirse ku bibin faktorekî serbixwe û bibandor di biryarê de." Dr. Rezwan Badînî rexneyan li helwêsta ereban digire ku tevî wan konferansan dibin û dibêje: "Em di piraniya van konferansan de di komîteya serpereştiyê de bûn, berî konferansan ligel aliyên erebî li ser bernameyekê lihev dikim, lê ew di nava konferansan de nerînên xwe diguherînin û dijî daxwazên gelê kurd derdikevin."

### Soz û pratîka opozisyona Sûriyê li hev dernakevin

Konferansa opozisyona Sûriyê ya herî dawî li Stenbolê birêve çû, lê Kurdan konferans boykot kir. Rezwan Badînî, ku yek bû ji vexwendiyên konferansa Stenbolê, got: "Me pêşî li ser navê dewleta Sûriyê ya paş Esad lihev kiribû, ku Komara Sûriyê be, lê belê di nava konferansê de kirin Komara Erebî ya Sûriyê, tevî ku li Sûriyê gelek netewe hene û Kurd neteweya dûyemîn in. Lewma em jî vê yekê qebûl nakin. Di konferansê de ne zelaliyek jî hebû li ser qebûlkirina daxwazên Kurdan piştî rûxandina rêjîma niha ya Sûriyê. Aliyên tundrew û Îxwanên Sûrî dijî daxwazên kurdan bûn." Weke Rezwan Badînî behs kir, piştî boykotkirina kongreyê Ereban zêde daxwaz ji wan kir ku vegerin nava civînê, lê Kurdan qebûl nekir: "Me ji wan re got her car em li ser hinek prensîban lihev dikin, lê gava em derbasî nava konferansê dibin hûn poşman dibin."

**11 partiyên kurdî kom bûne û tenê mafê wan heye bi navê Kurdan helwêst werbigrin û biryarê bidin.**

Lê bi ser de jî kêşeya kurdan li ser nûnertiya kurdan jî di wan civînên ku bo opozisyona Sûrî hatine kirin, heye. Berdevkê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê Nûrî Birîmo ne razî ye ku kesayetiyeke weke Rezwan Badînî weke nûnerê gelê kurd di wan civînan de bê binavkirin û dibêje: "Ew kesên serbixwe ne û bi ti hawî nûnertiya kurdan li Sûriyê nakin. Vêga 11 partiyên kurdî di çarçoveya civata partiyên siyasî de kom bûne û tenê mafê wan heye bi navê Kurdan helwêst werbigirin û biryarê bidin." Di vî alî de jî zêdetir berê rexneyan li Selahedîn Bîlal bû, ku weke Kurdekî serbixwe ji civîna Stenbolê venekişiya.

Nûrî Birîmo nîgeraniya xwe nîşan da ku hinek kes bi navê Kurdan tevî wan civînan dibin û got: "Ereb qenc dizanin kî nûnertiya Kurdan dike, lewma ti îtîbarekê nadin wan Kurdan yên ku tevî wan civînan dibin." Lê belê Rezwan Badînî dibêje: "Di civîna Antalya li Tirkiyeyê, ku 54 Kurd tevlî bûn, dengê xwe dan min ku nûnertiya wan di civînên ku li ser rewşa niha ya Sûriyê tên girêdan de bikim."

### Nebûna yekdengiyê

Ji bo yekkirina helwêsta kurdan bo dema piştî rûxandina rêjîma Beşar Esad, Rezwan Badînî pêwîst dibîne ku Kurd bi xwe civînekê saz bikin. Derbarê nebûna yekdengiyê di nava bizava siyasî ya kurdî de li Sûriyê, Birîmo dibêje: "Niha em bi lêkolînekê ve mijûl in û di demeke nêzîk de civîneke kurdî-kurdî ji bo dirustkirina jêderekî kurdî di biryardanê de tê sazkirin. Rast e, niha li ser çend pirsan Kurd li Sûriyê ne yekdeng in, ji ber ku aliyê desthilatê û yên ku dijî daxwazên kurdan in çend aliyekî kurdî, ku partiyên biçûk in, kişandine aliyê xwe. Ev kêşe jî bi rêya civîneke kurdî-kurdî çareser dibin."

Lê Endamê Komîteya Siyasî ya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Ebdulbaqî Yûsiv, dibêje: "Niha em 11 partiyên kurdî di bin sîwanekê de ne û plana me heye ku di demeke nêzîk de civîneke aliyên kurdî li Sûriyê girêbidin, daku jêderekî bo Kurdên Sûriyê ava bikin, ku tenê mafê wan hebe nûnertiya kurdan di civîn û konferansan de bikin û biryar bidin."



Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Bingeha aborî ya Xweseriya Demokratîk: 'Tirşûya Şelengoyê' gava yekemîn e

*Rûdaw - Piştî ragihandina Xweseriya Demokratîk ji aliyê Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) ve, niha jî gavên destpêkê ji bo peydakirina bingeha aborî tên avêtin. Kolektîfa 'Ax û Av' ya ku ji aliyê şaredariya BDPyî ya Wêranşarê hatiye avakirin, bi hevkariya 70 malbatan û li ser 35 donim zevî tê meşandin û li hewşê xaniyên ku ji kerpîçan tên avakirin wê baxçeyên organîk bên çandin. Kolektîfa ku niha 'Tirşûya Şelengoyan' hildiberîne, ji bo li gorî ruhê Xweseriya Demokratîk tevbigere, bêyî ku alîkariyê ji dewletê bigire, dixwaze her tiştî bi derfet û hêza xwe çareser bike û bibe bersîva pirsgirêka xwe. Kolektîfê da zanîn ji ber ku li gorî felselefe û daxwaza KCDê ye, wan ev proje pêş xistiye û hewl didin ku bibin bersîva pirsgirekên aborî yên civakê. Kolektîvê heta niha 2 hezar û 300 konservên 'Tirşûya Şelengoyan' çêkirine.*





### Hevseroka BDPê ya berê Gultan Kişanak:

# Hillary Clinton bi pêşniyarên BDPê razî bû

- AKPê ji civîna Clinton ligel me aciz bû
- BDPê di ti rewşekê de dest ji çareseriya demokratîk bernade
- Hebûna bîr û baweriyên cuda derbarê ragehandina Xweseriya Demokratîk de tiştekî asayî ye

Endama Parlementoya Tirkiyeyê û hevseroka BDPê ya berê Gultan Kişanak di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de behsa naveroka hevdîtina nûnerên BDPê ligel Wezîra Derve ya Amerîka Hilarry Clinton li Enqere kir û diyar kir ku ew ji rûniştinê razî ne.

**Rûdaw: Tu û Selahattin Demirtaş roja 16ê vê mehê li Enqereyê bi nûnertiya BDPê ligel Wezîra Derve ya Amerîka Hilarry Clinton civiyan. Civîn li ser daxwaza kê bû?**

**Kişanak:** Li ser daxwaza birêz Hilarry Clinton hat sazkirin. Piştî civîna wê ligel herdu fraksyonên parlemenî yên AKP û CHPê, daxwaz kir ligel fraksyona BDPê jî bicive.

**Helwêsta wê derbarê çareseriya kêşeya Kurd de çi bû, ti pêşniyareke wê ya ya taybet hebû?**

Derbarê pêşniyareke diyarkirî de em nepeyvîn. Wê zêdetir derbarê pêşniyarên BDPê de bo çareseriya kêşeya Kurd pirsiyar kir. Xwest bizanibe çawa çareseriya kêşeya Kurd tê kirin. Me wekî nûnerên BDPê tekezî li ser wê yekê kir ku berî her tiştî destûreke nû bo Tirkiyeyê şertê serekî yê berqerarkirina aştî û çareseriyê ye. Di heman demê de me jê re got pêwîst e Kurd û hemû aliyên din tevî nivîsandina destûrê bibin. Bi awayekî eşkere jî me got pêwîst e mafên Kurdan di destûra nû de bên çespandin, mafê hemû ol û mezheb û neteweyên din jî bên garantîkirin. Herwiha me got bi baweriya BDPê yasaya nehiştina terorê bûye yasaya tirsandin û serkutkirina Kurdan, lewma bêyî sererastkirina vê yasayê û berfirehkirina yasaya lêborînê pir dijwar e bawerî dirust bibe. Di bersiva van pêşniyarên me de Clinton got Amerîka bo çareserkirina kêşeyên Tirkiyeyê, hevkariya Tirkiyeyê dike.

**Helwêsta wê derbarê PKKê de çi bû?**

Pir vekirî dibêjim di vê civînê de bi ti hawî qala PKKê nehat kirin, herdu aliyan zêdetir tekezî li ser rola giring ya Kurdan di proseya nivîsandina destûrê de kirin. Herwiha Clinton razîbûna xwe li ser pêşniyar û helwêstên me derbarê çareseriya kêşeya Kurd de nîşan da.

**Helwêsta AKP derbarê civîna BDPê ligel Hilarry Clinton çawa bû?**

Heya niha ti helwêsteke fermî ranegihandiye, lê ji helwêstên hinek kanalên medyayê yên nêzîkî AKPê em fêm dikin ku bi vê civînê hers bûne.

**Gelo bi civîna ligel we, Clinton xwest nîşan bide ku Amerîka bi heman çavî berê xwe dide partiyên Tirkiyeyê û piştgiriya partiyeke taybet nake?**

Civîna Clinton ligel fraksyona BDPê helwêsteke, ku ji bo Amerîka hemû partiyên Parlementoya Tirkiyeyê weke hev in. Yanî Amerîka bi çavekî wekhev li partiyên Parlementoya Tirkiyeyê temaşe dike. Em jî weke BDPê vê helwêstê rast dibînin, ji ber ku Kurd pêkhateyeke serekî ya Tirkiyeyê ne û di demokratîbûna Tirkiyeyê de rola serekî dilîze.

**AKP piştî bûyera Farqînê, ku 13 leşkerên artêşa Tirkiyeyê tê de hatin kuştin, xwest çavê BDPê bitirsîne. Bi baweriya hinek kesan AKP gihiştiye vê armanc xwe û BDPê tirsiyaye.**

Na, tiştekî wisa tune û nabe. BDPê bi piştgirêdana bi filozofiya demokratîk ku dengê hevwelatiyan bidestve aniye û pêşrewiya çareseriya demokratîk dike û di ti rewşekê de dest ji vê armancê bernade. Berî bûyera Farqînê çi dîtineke me hebû, îro jî heman dîtina me heye. Bi baweriya me divê operasyon bi dawî bên, eger na îhtîmala dûbarebûna şer her demê li holê ye. Her çiqasî zext berfireh bin, bi ti hawî BDPê dest ji siyaseta aştiyane bernade û xwe nade destê siyasetên desthilatê, lê belê ew yek jî pir bi başî diyar e ku berpirsên hikûmeta AKPê, di nav de jî serokwezîr û çend parlementar, hewl didin şerê netewî li Tirkiyeyê xurt bikin. Ji ber helwêst û daxuyaniyên wan li çend navçeyan êrîşî ser navend û baregehên me hat kirin. Li dijî van êrîşan me daxwaz ji cemaweran kir xwe bigirin daku ev hewldan bên pûçkirin. Em weke BDPê wê demê dipeyvin, gava li me tê guhdarîkirin. Li cihekî ku hewl bê dayin peyvên me bên têkdan em napeyvin.



Hillary Clinton ligel Gultan Kişanak û Selahattin Demirtaş li Enqere

> **Em weke BPD wê demê dipeyivin, dema ku li me tê guhdarîkirin.**

**Tê gotin hinek parlementerên Kurd ji ragehandina otonomiyê (Xweseriya Demokratîk) ne razî ne û bi baweriya wan lezgînî di vê biryarê de hat kirin. Daxuyaniya Altan Tan û Şerefetîn Elçî bi vî rengî ye. Dîsa gotegot hene ku Leyla Zana odeya civînê bicih hiştibû?**

Hewldan tên kirin ku yekrêziya Kurdan bê têkdan, planên bi vî rengî di odeyên tarî de tên darêştin û hewldan tên kirin bi rêya hinek kanalên medyayî bê bicihkirin. Eger dewlet bixwaze kêşeya Kurd bi aştiyane çareser bike, pêwîst e dest ji siyaseta parçekirina Kurdan berde. Ev siyaseteke ne rast e û xizmeta çareseriyê nake. Pêwîst e berî hemûyan medya dest ji hewldanên xwe bo lawazkirin yan lawaz nîşandana siyaseta Kurd berde. Di heman demê de divê em vê yekê bizanibin ku Kongreya Civata Demokratîk (KCD) ne pêkhateyeke partîzanî ye, lê platformeke civakî û siyasî ya berfireh e, boçûn û fikir û xwendinên cihê lixwe digire, Îslamî, lîberal û demokrat tê de hene, lewma cudahiya ra û nerînan tiştekî normal e. Eger ji hevalên me di nava KCDê de derbarê ragehandina Xweseriya Demokratîk de xwedî nerînên cihê bin, asayî ye. Lê belê ev cudahî nayên wateya ku li ser mafên serekî yên Kurdan cudahiyên me hebin. Ger herin ji Altan Tan û Elçî bipirsin, pir vekirî dibêjin ku destjêberdana Xweseriya Demokratîk bo Kurdan nayê minaqeşekirin. Lê medyaya tirk wiha nîşan dide ku bizava siyasî ya kurdî li ser mafên serekî yên Kurdan ne hemfikir e. Di wê dema ku KCDê bi ragehandina biryara Xweseriya Demokratîk ve mijûl bû, di hesabê ti kesî ji me de nebû ku bûyereke bi vî rengî li Farqînê biqewime. Dibe ku ew operasyon bi niyeta reşkirina vê biryarê hatibe bicihkirin. Ev jî ne rast e, ku Leyla Zana ji salonê derketibe. Leyla Zana yek e ji wan hevalên ku di nava siyaseta kurdî de xwedî cihekî diyar e, eger nerazîbûneke wê hebe yan baweriya wê bi vê biryarê nebe, dikare bê ku hesabê tiştekî bike, bi raya giştî rabigihîne.

*Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw*

Partiyên Rojhilatê Kurdistanê:

# Îran dixwaze krîzan derxe

Hêmin Xoşnaw

Ligel destpêkirina topbarana Îranê li ser Herêma Kurdistanê, çavdêrên siyasî vê kiryarê weke hewldaneke Îranê bo nuxumandina krîzên xwe yên navxwe wesif dikin. Bi baweriya partiyên kurdî yên Rojhilatê Kurdistanê, Îran heya dawî nikare krîzên xwe yên navxwe veşêre û dibe ku êrîşa wê bibe sedemê teqîna krîzan.

Di 21ê Hezîrana borî de, Îranê careke din dest bi bordûmana navçeyên sînorî yên Herêma Kurdistanê kir. Topbaran girantir dibe, PJAK jî dibêje ev du hefte ne Îranê dest bi êrîşên bejî jî kiriye, heya niha nêzîka 200 Pasdarên Îranê û 7 gerîllayên PJAKê hatine kuştin, lê rê nedane Îran bê pêş.

Her çiqasî Îran hebûna gerîllayên PJAKê dike behaneya êrîşên xwe li ser xaka Herêma Kurdistanê, lê PJAK ragehand ku ev 7 meh in ti êrîşek dijî Îranê nekirine û agirbest ragehandine û di heman demê de Îran gund û cihê koçeran topbaran dike

### Hesabê siyasî: Hilbijartin

Bi baweriya Nûnerê Partiya Demokrata Kurdistanê li Hewlêrê Omer Balekî, êrîşa Pasdaran li ser Herêma Kurdistanê dijî yasa û destûra Îranê ye, ji ber ku li gor yasa tenê artêşa fermî dikare bersiva êrîşên li ser sînor bide: "Artêşa Pasdaran bi navê parastina sînor derbasî xaka Herêma Kurdistanê dibe, hisabên siyasî li piştê hene, dixwaze ji raya giştî ya Îranê re bêje li sînorên rojava `Herêma Kurdistanê` û rojhilat `Bluçistan` gef li ser xaka Îranê heye, lewma divê kêşeyên me yên navxweyî nemînin. Bi vî awayî jî hewl dide hilbijartinên bê yên Îranê bi aliyê xwe de bikişîne."

### Ji bo çareseriya keşeyan dermeneke şaş

Cîgirê Sekreterê Partiya Demokrata Kurdistanê Mistefa Mewlûdî nêrîna Balekî piştrast dike û bi baweriya wî Îran ji bo krîzekê çareser bike krîzeke din derdixe:



Di êrîşên bejî de heta niha 200 pasdarên Îranê û 7 gerîllayên PJAKê jiyana xwe ji dest dane

"Mebesta Îranê li ser Herêma Kurdistanê xistina guşaran e da ku bikare pêwîstiyên siyasî yên navxwe bidestve bîne."

Li gor Mistefa Mewlûdî, Îranê ji bo çareseriya derdên xwe dermanekî baş hilnebijartiye: "Ev ne derman e bo çareseriya kêşeyên navxwe yên Îranê. Kêşeya baskên desthilatê ligel hev heye. Kêşeya gel û rêjîmê heye. Bi dîtina min, bi derxistina kirîzeke nû, Îran ne ku nikare kêşeyên xwe çareser bike, lê dibe kêşeyên wê kûrtir jî bibin."

Lê Berpirsê Pêwendiyên Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDK-Î) li Hewlêrê Tahir Mehmûdî ne di wê baweriyê de ye ev kar bibe sedemê teqîna krîzên Îranê: "Ji ber ku ev kêşe tenê li navçeyên sînorî yên Kurdistanê heye û hemû Îran lixwe negirtiye, herwiha ev kar nikare vşêre ku li Îranê nerazîbûn di zîrveyê de. Lewma bawer nakim ev kar bibe sedemê ku nerazîbûn û xwepêşandanên mezin li Îranê çêbibin."

### "Êrîşa PJAKê dijî binpêkirinên pasdaran e"

Roja 22ê Tîrmehê PJAK ragehand ku weke berisvekê li ser êrîşên Îranê li navçeya Serdeşt êrîş biriye ser otomobîleke leşkerî û berpirsê sîcuriya artêşa Qudisê û 5 pasdar kuştine. Ajansa Farsnews piştrast kir ku Fermandarê Leşkerî yê devera Qumê Ebas Asim di êrîşeke PJAKê de hat kuştin. Ev êrîşa PJAKê di demekê de tê ku artêşa Pasdaran bi behaneya girtina rê li ber gerîllayên PJAKê berbi sînorê Herêma Kurdistanê tê.

Li gor Omer Balekî, êrîşa PJAKê reaksiyoneke dijî kiryarên Artêşa Pasdaran e: "Encamdana êrîşa leşkerî dijî hêzên Îranê di nava vî welatî bi xwe de corek ji xebata dijberî ye. Êrîşa PJAK reaksyoneke dijî binpêkirinên Pasdaran e."

Amerîka derbarê êrişên Îranê diaxive

# Em rewşê dişopînin



Hawar Ebdulrezaq

Balyozxaneya Amerîka li Îraqê derbarê êrişên Îranê bo ser navçeyên sinorî yên Herêma Kurdistanê bo Rûdaw got ku ew çavdêriya rewşê dikin. Li aliyê din çend pisporên amerîkî di wê baweriyê de ne ku siyaseta Amerîka himber Îranê di çend salên borî de nerm bûye.

Komara Îslamî ya Îranê bêtir di dawiya meha Hezîranê de topbarana navçeyên sinorî yên Herêma Kurdistanê destpêkirin, ev du heftiye jî êrîşa bejayî destpêkiriye. Lê hêzên Îranê ji aliyê gerîllayên Partiya Jiyana Azad a Kurdistan (PJAK) rastî bersinggirtinê hatiye û li gor amareke PJAKê heta niha nêzîkî 200 pasdarên Îranê û 7 gerîllayên wan di wan êrişan de hatine kuştin.

Di nava van bûyeran de bêdengiya Amerîkayê cihê pirsê bû, bi taybet ji ber ku parastina sînorên Îraqê heta dawiya vê salê erkê Amerîkayê ye. Lê berdevkê balyozxaneya Amerîka li Bexda, bi daxuyaniya ku daye Rûdawê ew bêdengî şikand.

Berdevkê Balyozxaneya Amerîka li Bexda, David Ranz derbarê helwesta Amerîka himber êrîşên Îranê yên vê dawiyê û bêdengiya Amerika got "me çendîn raporên cuda li ser vê mijarê dîtine, em temaşeyî rewşê dikin. Îraq welatekî xwedî serwerî ye û em çaverê dikin ku cîranên Îraqê û Îran jî di nav de, hurmeta serweriya Îraqê û silametiya xelkê wê bigirin."

Pisporekî Amerîkî di wê baweriyê de ye ku îdareya Obama li çav îdareya Goerg W. Bush siyaseteke nerm himber Îranê heye, loma gelekî zehmet e ku Amerîka derbarê van êrîşan helwesteke ciddî nîşan bide.

Profesorê Zanistên Siyasî li Zanîngeha Wright a bajarê Dayton a Eyaleta Ohio ya Amerîkayê William Anderson got "ez dibînim ku ji dema ku Obama bûye serokê Amerîka êdî siyaseta Amerîka himber Îranê hatiye guhertin. Obama bi şêweyekî fermî PJAK weke rêxistineke teroristî naskiriye, loma gelekî zehmet e ku Amerîka derbarê şerkirina Îranê dijî PJAK axaftinekê bike."

Ew profesorê amerîkî di dirêjahiya şiroveya xwe de diyar dike ku armanca Amerîka ji naskirina PJAK weke rêxistineke teroristî ew bû ku dilê Tirkiyeyê razî bike, ji ber peywendiya ku navbera PKK û PJAKê de heye.

Herçende di destpêka vê mehê de dema Wezîrê nû yê Parastina Amerîka Leon Pantay serdana Bexda kir û got ku tehemula wan hindik maye li himber çekdarkirina grûp û milîtarên Îraqê ji aliyê Îranê, lê Wezîrê Parastina Îranê bersiva wî da û got tiştekî wisa tune. Destpêka meha borî Wezîrê Pêşmerge Şêx Cafer di hevpeyvînekê de Îran bi wê yekê tawanbar kir ku Grûpa Ensarulîslam diparêze û wan tîne ser sinor bo êrişkirinê. Heftiya borî jî peyvdarê PJAKê got ku di êrîşên bejayî yên hêzên Îranê de çekdarên Ensarûlîslam jî beşdar in.

**Lêkolerekî siyasî yê Rojhilata Navîn: Ev karên Îranê şaşiyên stratejîk in, wisa dike ku hemû partiyên îraqî piştevaniya Amerîka bikin**

Gelek çavdêr di wê baweriyê de ne ku destpêkirina êrişên Îranê bo ser xaka Kurdistanê û girtina ava çemên Elwend û Sîrwan ji aliyê Îranê, taktîkeke wî welatî ye û goşareke bo ser Kurdan da ku ji bo mayîna wan li Îraqê piştevaniya Amerîkayê nekin. Wezîrê Parastina Amerîka Leon Panetta di serdanekê de bo Îraqê got Îran ji bo derxistina hêzên Amerîkayê ji Îraqê careke din plana sala 2007 û 2008ê bikartîne.

Li gor profesorekî Zanîngeha Kurdistan a li Hewlêrê jî sedema sereke ya bêdengiya Amerîkayê himber êrişên Îranê ew e ku Amerîka naxwaze meseleyan aloztir bike. Profesorê Zanistên Siyasî li Zanîngeha Kurdistan, Dr. Îsmet Tar got "ew naxwazin xwe bixin nava karûbarên hundirê Îraqê, lê dixwazin rê bidin desthilatdarên kurd û îraqî ku bi serê xwe wan meseleyan çareser bikin."

Lêkolerê Siyasî yê Îraqî li Peymangeha Waşington bo Siyasetên Rojhilata Navîn, Ehmed Elî ragihand rêberên kurd naxwazin peywendiyên xwe digel Îranê têkbidin û got Kurd dixwazin bi rêyên dîplomasî vê pirsgirêkê çareser bikin." Wî di dirêjahiya daxuyaniyên xwe de got "Ev karên Îranê bi şêweyekî giştî şaşiyên stratejîk in, wisa dike ku hemû partiyên Îraqî piştevaniya lihevhatineke nû ya ewlekariyê digel Amerîka, bikin." Ev boçûna Ehmed Elî di daxuyaniyên çendîn parlamenterên ereb ên sunnî de diyar bû ku bi tundî rexne li wan êrişên Îranê girtin.

# Osman Ocalan: Di bûyera Farqînê de dibe ku tiliya Sûriye û Îranê hebe

**Hewlêr (Rûdaw) –** Osman Ocalanê ku ji PKKê veqetiya û ligel çendîn hevalên xwe demekê bi navê



Partiya Welatparêz a Demokratîk (PWD) tevgerek siyasî damezirand, ragihand, dibe rolê Sûriyê û Îranê di pevçûna Farqîna ser bi Amedê de hebe ku 13 leşker û du gerîlla tê de jiyana xwe ji dest dabûn. Ocalan got, "Ji ber ku Sûriye û Îran ji siyaseta Tirkiyeyê ya derbarê wan de aciz in, dibe ku bixwazin PK li dijî Tirkiyeyê şer bike".

Osman Ocalan derbarê vegera xwe ya Tirkiyeyê de jî pirsên Rûdawê bersivand û got ev du sal in bi rêya dezgehên medyayê ew xwesteka vegera xwe tîne ziman lê heta niha ti rayedarekî ji dewleta tirk pê re neaxiviye. Ocalan da zanîn ku wî jî heta niha bi nûnerên tirk re têkilî nedaniye û got, "Eger dezgehek bo hevpeyvînê min vexwîne ez amade me. Herwiha ji bo vegerê şert û mercên baş hebin ez dikarin vegerim jî."

Osman Ocalan sedemê vegerandina xwe ya bo Tirkiyeyê vedigerîne alîkarîkirina çareserkirina pirsgirêka kurd û dibêje, "Kêşeya kurd bûye wek girêya kor, divê ev şerê ku 30 sal in dom dike êdî bi dawî bibe."

Derbarê bûyera ku li Farqînê rû dabû û 13 leşkerên tirk tê de hatibûn kuştin, Osman Ocalan, got îhtîmal heye ku tiliya Sûriyê û Îranê di vê bûyerê de hebe. Ocalan got Tirkiye di dorpêçana navnerewî ya li dijî Suriyê de rolê sereke dileyîze û wiha dom kir: "Li dijî Sûriyê li Tirkiyeyê pêşî Konferansa Antalyayê û dû re Konferansa Stenbolê hat li dar xistin. Dibe ku Sûriye û Îran ji ber ji polîtikayên Tirkiyeyê ne razî ne, bixwazin PKK şer bidomîne. Di nava refên PKKê de gelek Kurdên ji Sûriyê û Îranê hene. Herwiha ji birêvebirên PKKê Murat Karayilan nêzî Sûriyê ye, Cemil Bayik û Mustafa Karasu jî nêzî Îranê ne. Dibe ku Sûriye û Îran bandora xwe ya li ser rêxistinê bi kar anîbin û ev çalakî li dar xistibin."

Ocalan, di dawiya axaftina xwe de balkişand ser daxuyaniyên Serokê PKKê Abdullah Ocalan û got ku ew berê li ser xeta artêşê daxuyaniyan dida û got niha helwesta xwe guherandiye û li ser xeta hikûmeta AKPê daxuyaniyan dike. Ocalan wiha axivî: "Eger Abdullah Ocalan bi hikûmeta AKPê re têkeve nav pêwendiyên xurt û hewl bide çareseriyê bi Tirkiyeyê re çêke, wê Îran û Sûriye jî vê jî aciz bibin."



## General Dîlmanî:

# Çekdarên Ensar el-Îslam rêbertiyê ji pasdaran re dikin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Fermandarê Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê, General Selah Dîlmanî, ragehand ku bi fermana Serokê Herêma Kurdistanê û Wezîrê Pêşmerge, hêza pêşmerge li navçeya Pişder a nêzîkê sînorê Herêma Kurdistanê di amadekariyê de ne.

Di vê derbarê de Fermandarê Liwa 18 ya Balekayetî, General Selah Dîlmanî ji Rûdawê re got "Niha li navçeya Pişder 6 lîwayên hêza pêşmerge di amadekariyê de ne. Ji xeynî wan her şeş lîwayan, hêzeke taybet ser bi Lîwaya 4 a Dihokê ku ji 500 pêşmergeyan pêk tê, gehiştine navçeyê. Herwiha fermana Serokê Herêma Kurdistanê û Wezîrê Pêşmerge bi me re ye bo rûbirûbûna her rewşeke nexwestî li ser sînor.''

Lê belê Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê, Cebar Yawer, red kir ku hêza pêşmerge li hinek navçeyên ser sînor di amadekariyê de bin û got: "Ew hêzên ku li Pişder in, tenê ji bo perwerdebûn û perwerdekirinê li wir in, me hîç hêzek nexistiye rewşa amadekariyê."

Derbarê wan nûçeyên ku behsa wê yekê dikin çekdarên Ensar el-Îslam ligel pasdarên Îranê şerê gerîllayên PJAKê dikin, General Dîlmanî ew nûçe piştrast kir û wiha pêde çû: "Çekdarên Ensar el-Îslam rêbertiyê ji pasdaran re dikin, ji ber şarezayê cografya navçeyê ne. Niha du mifrezeyên (batalyonên) Ensar el-Îslam bi awayekî eşkere ligel pasdaran e, hemû jî Kurd in û xelkên navçeyên Qeladizê, Sengeser, Teqteq, Kifrî û Kelar in."

**Du mifrezeyên Ensar el-Îslam bi awayekî eşkere ligel pasdaran e, hemû jî Kurd in û ji navçeyên Qeladizê, Sengeser, Teqteq, Kifrî û Kelar in.**

Ji aliyekî din ve çavkaniyeke ku nexwest navê xwe bide, bo Rûdawê da zanîn ku şerê di navbera artêşa Îran û gerîllayên PJAKê de zêdetir li navçeyên Pîranşar, Serdeşt, Mîrawe û Alote yên aliyê Îranê ye û wiha axifî: "Îran di bombebarankirina navçeyê de helîkopter, roket û sarûxên giran bikar tîne. Herwiha Amerîka û Tirkiye jî bi hûrî çavdêriya tevgera Îranê li navçeyê dikin."

Ji ber topbarankirina navçeyên sînor ên Herêma Kurdistanê ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve heta niha bi dehan malbatên Kurd ji wan deveran koçber bûne û 3 hevwelatî jî li gundê Sûnê yê ser sînor birîndar bûne. Parlementoya Îraqê jî bo ji nêzîk ve haya wê ji rewşa sînor a Herêma Kurdistanê hebe, şandeke Lijneya Berevanî û Asayişa Parlementoya Îraqê bi serokatiya Hesen Sinêdê serokê lijneyê, ku yek ji serkirdeyên Hizba Dawe ya Îraqê ye şand navçeyên ku hatine topbarankirin. Li gor agahiyên Rûdawê, dema şanda Parlementoya Îraqê çû navçeyên ku hatine topbarankirin, wek gundê Sûnê û Alye Reş, Îranê topbaran rawestand. Serokê lijneyê jî ku wê demê li ser xwendingeha hilweşiyayî ya gundê Sûnê rawestiya bû, ya ku topên Îranê rûxandibû, gotibû "Ka ji ku Îran topbaran dike?" Lê dema parlementer bi rê ketin û ji cihên hatibûn topbarankirin dûr ketin, Îranê dest bi topbaranê kir û di encam de du hevwelatiyên ji gundê Sûnê birîndar bûn.

### 200 leşkerên Îranê hatine kuştin

Çavkaniyeke berpirs ji Hêza Pêşmergeyên Herêma Kurdistanê, ku niha nêzîkê sînor e û nexwest navê wî bê belavkirin, ji Rûdawê re got "Di çend rojên borî de li aliyê Îranê şer û pevçûneke dijwar di navbera çekdarên PJAK û Artêşa Pasdarên Îranê de hebû."

Li gor agahiyên ji berdevkê PJAKê Şêrzad Kemanger, di şerê di navbera gerîlla û pasdarên Îranê de "heta niha zêdeyî 200 pasdar hatine kuştin û 10 ji wan efserên paye bilind ên Artêşa Îranê bûn." Kemanger wiha dirêjî bi axaftina xwe da: "Pêncşema borî fermandarekî mezin ê Îranê bi navê Serdar Ebas Asimî li navçeya Serdeşt ji aliyê gerîllayên PJAKê hat kuştin. Herwiha Fermandarê Giştî yê Hêza Serdeşt û Pîranşar Dilawer Recberzade û fermandarekî din ê mezin ê Artêşa Pasdaran, Hacî Axa Marûfî, jî bi destê me hatine kuştin. Di heman demê de heta niha 8 gerîllayên me jî şehîd bûne."

Ajansa fermî ya Îranê Fars News jî kuştina fermandarên serbazî yên Serdeştê piştrast kirin, ku ligel 5 serbazan hatine kuştin. Ajansê belav kir ku Serdar Asimî û 5 pasevanên wî di êrîşeke Artêşa Îranê de bo ser hêzên PJAKê li navçeya Serdeş hatine kuştin.

Li gor çavkaniyan, Serdar Ebas Asimî li bajarê Qum ê berpirsê sîxurî yê artêşa Elî Bin Ebî Talib bû û dema operasyonê artêşa Îranê bo ser navçeyên Çiyayê Qendîl dest pê kirin, ew anîbûn Serdeşt. Kemanger jî dibêje; "Piştî kuştina wî fermandeyê serbazî, niha Îranê şerê meydanî kêm kiriye û zêdetir bi top û helîkopteran navçeyê topbaran dike."

Hawar Ebdulrezaq Hewlêr

## Welatên rojava dijî penaberan hewldanan zêde dikin

# Penaberek: Jiyana kampê wekî jiyana serguyan e!

Penaberên kurd ên di kampên welatên Rojava de dijîn, diyar kirin ku jiyana wan a li kampan wekî jiyana li girtîgehan e û ne wekî biheşta texmîn dikirin ku li Ewrûpa bibînine. Bi baweriya yek ji berpirsên rêxistinek a taybet ji bo penaberan, pêwîst e gelê Kurdistanê ji rewşa ku li welatên Ewrûpa texmîn dikin û berî biryara çûna Ewrûpa bidin, bên hişyarkirin.

Elî Mihemed (28) ji Silêmanî ye û 11 sal in li Brîtanya dijî. Elî bi jineke îngilîz re zewiciye û niha dûcanî ye, lê Elî li kampek a penaberan a li Brîtanya ji bo rêkirina Îraqê hatiye amadekirin. Elî di daxûyaniyekê de ji Rûdawê re got: "Jiyana kampê tejî nexweşî ye, wekî jiyana di nava serguyan de ye. Parêzvanên di nava kampê de, mameleyek regezperestî li gel me dikin. Em di nava çar dîwaran de ne, tenê dihêlin em biçin nava baxçeyek biçûk û ew jî derdora wê bi dîwarek 8 metreyî hatiye girtin. Jorê dîwar jî bi têlan hatiye girtin. Di nava kampê de hinek odeyên hene ku 7 û heya 9 kes tê de dijîn dikin. Ti xwarinên wan jî nîne û piraniya caran em naxwin."



### Tu bigîhî welatek Ewropa jî nikarî tevlî civatê bibî

Rêxistina STATT Consulting a taybet ji bo hişyarkirina mirovan a ji rewşa penaberan roja 8ê Tîrmehê, li Hewlêr work shopek taybet ji bo rolê çapemeniyê di warê hişyarkirina civakî ya di vî warî de saz kir. Serokê vê rêxistinê behsa giringiya rolê çapemeniyê derbarê metirsiyên ji bo gihiştina xewnên xwe yên li welatên Ewrûpa di rê de rastî wan tên, kir.

Rêveberê wê rêxistinê Ceykeb Tawnsêd di work shopa ku ji aliyê Rêxistina Çapemeniya Serbixwe ya li Kurdistanê (IMCK)'ê ve hatî sazkirin de got: "Penaberên ku berê xwe didin welatên Rojava, rastî gelek pirsgirêkan tên. Mînak; metirsiya rêyên ku bikartînin û bi qeçaxî diçin, xapandina ji aliyê qeçaxçiyan yan jî mirina di rê de. Eger bigihî welatek ku bixwazî biçiyê, ew yek jî ne hêsan e tu bikarî tevlî wê civakî bibî, karekî bibînî. Herwiha dûrî û tenêtî. Dibe ku ji ber dûriya ji welatê xwe li gel çand û kevneşopiyên wî welatî negoncî. Herwiha te mafê penaberiyê ne wergirtiye û tirsa dersînorkirinê heye."

### Çapemeniya kurd û pirsgirêka penaberan

Hejan Teha rojnamevanek a Kurdistanê ye û bi baweriya wê, heya îro çapemeniya kurd nekariye gelê kurd ji metirsiyên ku di çûna welatên Rojava de rastî penaberan tên hişyar bike. Di vê derbarê de dibêje: "Heya niha di çapemeniya kurd de pirsgirêka penaberî û koçberan wekî pirsgirêkek civakî nehatiye destgirtin. Tekane xala ku çapemeniya kurd tekez li ser kiriye, tenê meseleya dersînorkirina wan bû. Li wê derê şopandina penaberan rawestandine, ti tiştek derbarê jiyana kesên vegeriyayîn yan jî derbarê karesat û trajediya ku di nava wan kampan de rastî Kurdan tên, nekirine."

### Hikûmetên Ewropa êdî butçeya parêzerên penaberan dibirin

### Awisturya siyaseta xwe ya penaberan diguherîne

Rêveberê wê rêxistinê Ceykeb Tawnsêd ji Awisturya ye. Welatê wî yek ji wan cihan e di nava çend salên borî de gelek Kurd bi awayek ne yasayî berê xwe daneyê.

Li gor îstatîstîkeka wê rêxistinê, ji 2007ê heya nîsana îsal, 1305 penaberên kurd bi keştî û bi awayek ne yasayî çûne Awustûrya. Ev yek jî bûye sedemê guhertina siyaseta penaberî ya vî welatî. Hikûmeta Awisturya heftiya borî peymanek li gel Malezya mor kir. Armanca wê peymanê jî, vegerandina penaberên bi keştî û bi awayek ne yasayî ketîn nav Awisturya, çaverê dîsa rewaneyî Malezya bên kirin. Di na wan de Kurd, îraqî, îranî û afganî jî hene.

Namo Mihemed (27) ji Kerkûkê ye û ev 6 sal in li Brîtanya dijî. Namo bi jineke Brîtanî re zewiciye û zarokek jê heye. Niha li kampek a penaberan li benda cîbicîkirina biryara dadgeha Brîtanya ya ji bo vegera Îraqê ye. Namo ji bo nerazîbûna li dijî vê biryarê, li gel 24 penaberên kurd ketiye greva birçîbûnê. Namo derbarê jiyana di nava kampa de dibêje: "Jiyana me ya di nava wê kampê de pir xirab e. Wekî jiyana girtiyekê mûebetê ye. Şerê psîkolojî li gel te dikin, te bêzar dikin, wisa li te dikin ku baweriya te bişkênin, dest jê berdî û vegerî Kurdistanê." Namo derbarê mameleya parêzvanên kampê de jî got: "Beşek zêde ne baş in, beşek ji wan wekî li gel heywanan mamele dikin."

### 80 penaberên kurd ji Brîtanya tên dersînorkirin

Di nava çend salên borî de, Brîtanya, Swêd, Norveç û Hollanda bi çend qûnax û pêngavan siyaseta xwe ya li dijî penaberan tund kirine û dest bi siyaseta dersînorkirina penaberên kurd kirine.

Heya niha bi sedan penaberên kurd û îraqî bi rêya firokeyê dersînorî Bexda kirine. Niha jî li 6 kampên Brîtanya nêzî 80 penaberên kurd hatine amadekirin, ji bo 16ê tîrmehê dersînorî Bexda bikin, ji ber ku firokexaneya Hewlêr û Silêmanî ne amade ne penaberên bi zorî hatîn rêkirin, wergirin. Biryara dersînorkirinê ji bo 24 penaberên îraqî yên li kampa Kamblefeald a li bajarê Oxforda Brîtanya dijîn hatiye dayîn. Penaber jî ketin greva birçîbûnê û rewşa tendirûstiya wan ber bi xirabiyê ve diçe.

Sekreterê Federasyona Tevayî Penaberên Îraqê Deştî Cemal derbarê pirsgirêkên ku li kampên Ewrûpa rastî penaberên kurd tê, ji Rûdawê re got: "Yek ji pirsgirêkan ew e hikûmetên Ewrûpa bûdçeya yasayî ji parêzerên ku penaberan di parêzin birîne û niha piraniya penaberan bê parêzer in. Problemek din jî ew e, ji bo penaber xwepêşandan û nerazîbûnan nîşan nedin, bi awayê grûb-grûb cûda kirine. Herwiha rêya peywendîkirina wan a bi telefon û serdanê li ser wan girtine."

## Rêveberê Dosyeya Penaberan li Hollanda:

# Şansê Kurdên Başûr kêm e

Eyûb Nûrî Hollanda

Mihemed Reza Eskender ji bajarê Rojhilatê Kurdistanê Mîhranê ye. Ew û xêzana xwe berî 19 salan wekî penaber hatine Hollanda. Eskender Zanista Civakî li zanîngeha Groningen Hoogschool mezûn bûye. Ev 11 sal in li bajarê Den Haag wekî Rêveberê Dosyeyan Li Fermangeha Karûbarên Penaberan kar dike.

Ew kampa ku Eskender di nav de kar dike, nêzî hezar penaber lê hene. Erkê wî ew e ku dema daxwaza kesekê hat pejirandin yan jî na, guhdariya wan bike û behsa qûnaxên piştre ji wan re bike.

Eskender dide zanîn ku niha hêjmarek pir kêm ji bakurê Kurdistanê tên, lê hêjmarek zêde ji başûr berê xwe didin Hollanda. Eskender dibêje: "Yên ji Herêma Kurdsitanê tên, ji bo wergirtina mafê penaberiyê şansek sifir hene. Eger kesek ji Herêma Kurdistanê bê, divê dosyeyek rast û bihêz derbarê çewisandina siyasî ya ji aliyê deshilatdarên Herêma Kurdistanê ve hebe. Ji ber welatên Ewrûpa dizanin li Kurdistanê bi berhev li gel welatên navçeyê aramî û azadiya xwe îfadekirinê heye." Piraniya penaberên Kurdistanê jî vê yekê dizanin, lê hê jî vê yekê ew sar nekirine ku rêya dûr, dirêj û giran ji bo gihiştina Ewrûpa bigrin pêşiya xwe.

Eskender wiha dirêjî da axaftinên xwe: "Ew tenê ji ber wê yekê tên ku pere hene û karîna geştê heye, lê dema digihin, rastiyan dibînin. Di odeyekê de 4 kes jiyan dikin û dibînin jiyan ewqas ne hêsan e ya ku texmîn dikirin, wê demê rastî diltengiyê tên."

Piştî hilweşandina rejîma Îraqê a sala 2003, ji bo piraniya îraqiyan, yasaya penaberan bi awayek dramatîk guhertin tê de hat kirin. Kurdên Herêma Kurdistanê bi salan ji ber çewisandina rejîma Saddam direviyan, di encama wan guhertinan de zerer dîtin. Niha hinek ji kesên ku tên Ewrûpa, xwe wekî xelkê navîn û başûrê Îraqê datîne, lê ji bo îspatkirina gotinên wan belge nîne.

Li Ewrûpa yasaya nû ya penaberan bi awayek berçav bûye sedemê kêmbûna hêjmara penaberan. Eskender di vê derbarê de got: "Bê eger li vê derê mafê penaberiyê ji bo kesekê hatiba red kirin, dikaribû biçe welatek din û li wê derê daxwaza mafê penaberiyê bike. Lê niha sîstema mora boyayê heye, li çi welatê bê red kirin, wê li hemû cihekê bê red kirin."



Tevî norweciyan Kurd jî ketin şînê

# Banû sax e, an miriye?

**Di nava komkujiya 22.07.2011 a Norwêcê de hejmarek ciwanên kurd jî hebûn, yek ji wana heya niha winda ye, yek din jî çîroka behsa rizgarbûna xwe û hevalên xwe dike. Heya niha çarenivîsa Banû Reşîd a kurd (17 salî) ku keçek ciwan û çalakvanek siyasî ya ser bi Partiya Karkerên Norwêcê ye, ne diyar e.**

**Norwêc (Rûdaw) -** Karox Hesen (42 salî) ku li bakurê Norwêcê dijî, dibêje "me wiah dizanî encamderê vî karê terorîstî misilman an jî Kurd e. Êvara ku ev kar pêkhatî televizyon û malperên înternetê ên Norwêcî wêneyên Mela Kirêkar nîşan didan. Min û hevsera xwe her dua dikirin ku ew di nava vî karî de nebe ji ber ku wê em di nava norweciyan de rûreş biban. Karox 10 sal in li Norwecê dijî û dibêje hertim wî hewil daye ku welatiyekî baş be. Mela Kirêkar ku li Norwecê dijî beriya demekê gef li karbidestên Norwêcê kiribûn, wê êvarê dîmenên vîdyoyî ên Mela Kirêkar li ser televiziyonê neman, herweha peyva terorîst jî ku berê bo karê bi vî rengî bikar dihat, guherîn û kirin 'nîşangirekî rengsipî'." Wer xuya bû duayên Karox û hevsera wî pêk hatibûn, herçiqasî ew ji bo qurbaniyên vê bûyerê dilgiran bûn, lê ew tirsa wan ku Kurdan kiribe nema. Karox dibêje êvara ku ev bûyer çêbû ew li nava bajêr bû, xelkê Norwecê di bin lêvan de digotin misilmanên biyanî karê xwe kirin, tenê Norwec aram bû ew jî nearam bû. Karox dibêje "ez pir hez dikim carek din çavên min bi çavê wan kesan bikevin, ser çavên wanî şermîn bibînim."

### 10 Kurd di nav de bûn!

Êvara 22.07.2011 li seranserê Norwecê êvarek xemgîn bû. Hêj ragehandina norwecî mijûlî belavkirina xeberê teqînek mezin bûn ku li baregehê Ofîsa Serekwezîr û navenda Partiya Karkerên Norwêcê pêkhatibû, xeberên din hatin ku nîşangirekî xwe gihandiye girava "Otaya" li nêzîkî Oslo. Li vê giravê dora 700 kadroyên ciwan ên bijartî yên Partiya Karkerên Norwec tevî mêvanên xwe mijûlî konferansa xwe ya salane bûn. Nîşangir weke nêçîrvanekî berê sîleha xwe da nava van ciwanan û teqe li wan kir. Ewên ku bûne qurbaniyê guleyên vî nêçîrvanî hêj gelekî biçûk bûn, hinek ji wana hêj 16 salên xwe tijî nekiribûn, ên din jî weke pêşengên pêşerojê taze hatibûn nav cîhana siyasetê. Di nava van ciwananan de ciwanên Kurdên Norwecê jî hebûn. Li gor agahiyên ku gihiştin Rûdawê, 10 ciwanên kurd li wir bûne. Dana Berzencî ku yek ji van ciwanên kurd bû, bi dengekî xemgîn wiha behsa bûyerê dike: "Kesek hate girava Otaya, çanteyekî tije sîleh di destê wî de bû, wî xwe weke polîs dida nîşandan. Lê çendek derbaz bû, me dît ku wî dest bi gulebaranê bi her alî de kir û gule barandin." Dana dibêje: "Min hewil da ez hinek hevalên xwe ji guleyên vî mirov rizgar bikim, min hinek ji wan rizgar kirin, lê ji bo hinekan jî min nekarî çi tiştekî bikim."

### "Min dengê nefesa wî dibihîst"

Kesê ku xwe weke polîs nîşanî Dana û hevalên wî dabû, nijadperestekî norwecî, bi navê Anders Behring Breivik bû. Çend saetan beriya ku Anders komkujiya girava Otaya pêk bîne, wî li navenda bajarê Oslo teqandin pêk anîbû û ji bo ku gava duyem a plana xwe pêk bîne, wî xwe gihandibû giravê. Ediriyan Pargon yek ji wan ciwanan bû ku bi destê Anders brîndar bibû. Ew bûyera rizgarbûn û dîmenên komkujiyê ji kanala BBC a brîtanî re wiha tîne ziman: "Dema kujer gule barandin ciwanan, wî xwe avêt erdê, hinek ji wan ketin nava avê, lê wî li ser erdê gule li wan didan, ew yek yek dikuştin. Gelek ji wana diketin nava avê, ez neçar mam min xwe li pişt kesên brîndar veşart. Ew hat nêzîk min, heya ber serê min hat, dengê nefesa wî dihat min, lê min xwe mirand û min dua ji xwedê dikir ku ew gulan bera min nede. Dema teqe kir gulleyek ber pişta min ket, lê min xwe veşart û wî ez nedîtim."

Banû li Facebookê diyar nîne

Her wê êvarê polîs û hêzên taybet ên Norwecê karîn Anders Behring Breivikê ku destê wî bi xwîna 78 hemwelatiyên bê guneh ên norwêcî sor bûne, desgîr bikin. Lê hêj gelek kesên ku çarenivîsa wan ne diyar e hene û dibe ku hejmara qurbaniyan zêdetir bibe. Banû Reşîd yek ji wana ye ku hêj winda ye. Rûdawê peywendî bi malbata Banû re danî, lê malbata Banû da xukirin ku ew di rewşek xerab de ne û niha nikarin çi daxuyaniyan bidin. Lê li pişka rojnamevanî ya ciwanan a ser bi Partiya Karkerên Norwecê hat diyar kirin ku Banû kesek çalak bûye û di çêkirina peywendiyên nav qatên civakê de rolek giring lîstiye. Herwiha beriya demekê Banû nivîsek li ser metirsiya cihêkariya nijadî nivîsandiye ku di ragihandina Norwecê de cih girtibû. Lê Banû ne dizanîbû ku ewê bi xwe jî rojekê bikeve ber êrişên vê cihêkariyê. Li ser facebookê jî profîla Banû hêj sar e û heftiyeke nehatiye nûkirin, herwiha hevalên Banû jî çaverêyî xeberên Banû ne.

### Dijminê Marksîzt, Misilman û Femînîstan bû

Anders Behring Breivik 32 salî bû. Beriya vî karê dijmirovî bi çend saetan wî li ser înternetê pirtûkek 1500 rûpelî dijî Marksîzt, Îslamî û Femînîstan belav kir. Ew xwe weke rêberê vê hizra nijadperest û tundrew dide xûyakirin. Baweriya wî ewe ku bi hevkariya hemfikrên weke xwe ewê heya sala 2083 Ewropa jî paqij bikin. 26.07.2011 parêzerê Breivik di konferanseke rojnamevanî de diyar kir ku psîkolojiya Breivik xerab bûye û ew wiha dizane ku di cengek pîroz de ye. Breivik ji parêzerê xwe re gotiye ku ev karê wî karekî gemar bûye lê dibêje ku eve cengeke û di cengê de karê wiha jî çêdibin û ev perçeyekin ji planên şer.



Anders Behring Breivik

### Cadde tije hezkirin bû

Kurdekî bi temen ku zêdeyî bist û pênc sale li welatê Norwec dijî û ji Rûdaw xwest ku navê wî di medyayê de neyê eşkere kirin, li ser vê bûyerê wiha dibeje: "Dema ev bûyer çêbû ez li nava qelebalixa bajarê Oslo bûm. Destpêkê gelekî tirs li cem bîyaniyan çêbû, ditirsiyan ku biyaniyan ev kiryar pêk anîbe, lê zêde dem neçû hat zanîn ka bûyer çi ye. Wê demê civaka Norwecê tev yek helwêst li hemberî terorê nîşan dan û herkesî hezkirin û rêz li hem hev nîşan dan. Yanî gumana ku li hember hev hebû, nema. Biyanî û xelkê Norwecê tev weke yek li hemberî bûyerê sekinîn, xweziya xelkê Kurdistanê jî ev dîmen dîtiban ka xelkê Norwêcê çawa tev bi hezkirin û viyan nêzîka hev dibûn. Ez di kilîseyeke bajarê Oslo de beşdarî merasîma taziyê bûm, xelkê norwecî teva serxweşî dida hev, her kesî xwe xwediyê bûyerê, xwediyê vê şînê didît."






# Li Amedê stêrkên sibe dipişkivin!

Şaredariya Baglarê ya Amedê li pey hev çend basketbolîstên ciwan derxist holê û ew şandin nav tîm û kampên navdar

**Bawer Çem** Amed

Piştî Şerazîm Cucuboga, zarokê kurd ê basketbolîst Şiyar Tamrîş jî mafê tevlibûna kampa Lîga NBA ya Amerîkayê bi dest xist. Beriya du mehan jî 6 zarokên kurd di Tîma Netewî ya Tirkiyeyê de mafê lîstinê bi dest xistibûn.

Piştî ku di van çend salên dawî de di bin banê Şaredariya Baglarê de saloneke sporê hate çêkirin, di warê sporê de serkeftineke mezin bi dest ket. Hem di basketbolê de û hem jî di tekvandoyê de gelek kesên serkeftî ji Amedê derketin. Salek berê Şerazîm Cucuboga ji ber lîstika xwe ya bêhempa ya basketbolê, ji aliyê NBAyê ve hatibû ecibandin û berê xwe dabû Amerîkayê. Îsal jî giregirên NBAyê li Tirkiyeyê zarokê kurd Şiyar Tamrîş weke basketbolîstê herî serkeftî hilbijartin. Tamrîş wê di rojên pêş de berê xwe bide Amerîkayê û tevlî kampa havînê ya NBA bibe. Antrenorê Tamrîş, Gokhan Yildirim, destnîşan kir ku di nava gelek vîdeoyên basketbolîstên li Tirkiyeyê de, vîdeoya Şiyar Tamrîş hatiye ecibandin û wiha got: "Zarokên Amedê pir serkeftî ne. Bi vebûna saloneke şaredariyê re, ev serkeftin derketin holê. Ez bawer im gelek kesên weke Şiyar hene. Eger li Amedê ev derfet bên avakirin, wê bi sedan zarokên serkeftî derkevin."

Yildirim ji Rûdawê re diyar kir ku wê di kampa havînê de koç û giregirên lîga NBA û NCAA li basketa hemû lîstikvanan binêrin û ew bawer dike ku wê ji zarokê kurd Şiyar Tamrîş re teklîfeke pir baş were.

## 'Hemû zarokên keviravêj in'

Yildirim destnîşan kir ku ew li hemû dibistan û polên Baglarê yek bi yek geriyane, gelek xwendekar ji bo sporê hilbijartine û wiha axivî: "Li Amedê gelek kesên bi qabiliyet hene. Ez di wê baweriyê de me ku wê serkeftinên mezintir jî bi dest bikevin. Pira niya van zarokan keviravêj in. Lê tên tevli sporê dibin û serkeftinên mezin nîşan didin. Bi wan re enerjî û qabîliyeteke bêhempa heye." Antrenor Yildirim da zanîn ku ji Amedê par hin basketlîsên din dîsa hatine ecibandin û transferê tîmên Efes Pîlsen, Pinar Karşiyaka bûne.


Şiyar Tamriş û antrenorê wî Gokhan Yildirim

## 'Divê tîmeke basketbolê bê avakirin'

Gokhan Yildirim bi bîr xist ku ji ber tîmeke Amedê ya basketbolê tune ye, hemû lîstikvanên serkeftî ji nava destê wan diçin û wiha got: "Ez bang li karsazên vî bajarî dikim, xwedî li van zarokan derkevin. Ji bo zarokên stêrk ên Amedê neçin welatên din, ji cihên din re xizmet nekin, werin li Amedê tîmeke serkeftî ya basketbolê ava bikin. Bila ev zarokên me, li ser navê me tevlî pêşbirk û maçan bibin û nûnetiya me bikin."

Du meh berê jî zarokên kurd ên futbolvan Muhacir Duman, Sabrî Gelmez, Zîlan Gulsum, Halîme Vural, Ebru Ugurkan û Mesuda Demiroglu mafê lîstina di tîma Netewî ya Tirkiyeyê de bi dest xistibûn. Ji ber ku tîmeke Kurdan a basketbolê tune ye, zarokên kurd ên serkeftî neçar dimînin ku li ser navê Tirkan bilîzin û temsîliyeta Tirkan bikin.

# Ligel penalti û du kertên sor dijberê xwe têknebir



**Swêd (Rûdaw) –** Sezona lîgên Swêdê yên jêr piştî 13 maçan di 9ê tîrmehê de bo sê hefteyan ket navbera sezonê. Nîva duyemîn ya sezonê di 1ê tebaxê de dest pê dike. Dalkurd di encama 13 maçan de 22 pûan girtin û di rêza 5.de cih girt. Lîdera lîgê Umea bi 29 pûnan di rêza yekem de ye û di navbera tîmên 2.,3. û 4.jî tenê yek pûan ferq heye. Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil bi bawerî ragihand ku ew hê jî favorî ne û got, "Di nîvê sezonê de em ê hewl bidin ku bibin lîderê lîgê da ku raste rast derbasî lîga jor bibin."

Dalkurd maça xwe ya dawî ya nîvê sezonê di 9ê tîrmehê de di saheya xwe de ligel tîma Syrianska Kerboran ku tîmeke suryaniyên ji Kerboranê ye, leyîst û 1-1 maç bi dawî bû. Di maçê de du futbolvanên Syrianska Kerboran kerta sor girtin û ji saheyê derketin, Dalkurdê jî mafê penaltiyeke girt lê nekarî bike gol. Ligel ku Dalkurd ji serî heta dawî leystikê di bin kontrola we de ajot û firset neda dijberê wê karibe bileyîze, lê dîsa jî encam neguherî û maç 1-1 bi dawî bû. Serokê Klûba Dalkurdê Kizil daxuyand ku maça bê ya 1ê tebaxê wê dîsa li himber Syrianska Kerboran di saheya wan de bileyîzin û got, "Em ê bi futboleke teknîkî wê wan têk bibin. Jiber ku me niha di navberê de tîma xwe nû kir. Me du forvetên nû, yek ji Nijerya û yek ji Liberya tevlî kadroya xwe kir."

Derbarê şampiyoniya lîgê jî Kizil baweriya xwe didomîne û got, "Hê 13 maçên me hene û di navbera me û lîderê lîgê de ferqek zêde tune. Umea wê sê maçên krîtîk li himberê tîmên rêza 2.,3.,û li himberê me bieyîze û wê di van maçan de çend puanan wenda bike. Ev jî bo me avantaj e."




# Lîgên tirk mehekî dereng dest pê dikin

**Stenbol (Rûdaw) -** Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê TFF ji ber lêpirsîna gendeliyê ku hê dom dike, biryar da ku destpêka sezonê paş bixe. Li gor biryara TFFê wê sezona Lîga Super a Spor Toto di 9ê îlonê de, sezona Lîga Bank Asya jî wê di 10ê îlonê de dest pê bike.

Ev demekê ye ku çavên sporhezan û dezgehên medyayê li daxuyaniya Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê TFF bû ku wê ligel lêpirsîna berfireh a gendeliyê ka wê sezon çawa û kengî dest pê bike. TFFê destpêka vê heftê biryara dawî da û dema destpêkirina sezonan diyar kir. TFF beriya ku vê biryarê bigire, ji Dozgeriya ku lêpirsîne dike belgeyan xwest û pêvajoya biryardanê da dest pê kirin. Beriya vê biryara nû wê sezona lîgên Tirkiyeyê di demên normal de, ango wê di 5ê tebaxê de dest pê bikira.

Serokê TFFê Mehmet Ali Aydinlar, beriya daxuyaniya biryardanê serdana Edliyeya Stenbolê kir û bi Dozgerê Komarê Mehmet Berk re hevdîtinek çêkir. Piştî ku hevdîtin bi dawî bû û Serokê TFFê ji avahiyê derket, navenda TFFê daxuyanî da û destpêka sezonê diyar kir. Wê sezona Lîga Super a Spor Toto di 9ê îlonê de, sezona Lîga Bank Asya jî wê di 10ê îlonê de dest pê bike.



Fîlmê Umur Hozatli Azadiya Wenda di meha îlonê de tê sînemayên Ewropa. Hozatli dezavantaja sînemaya azad bi butçe û kadroyên kêm wesif dike û dibêje, "Ez ê meşa xwe wiha bi tenê berdewam bikim."

# "Mirov di 17 rojan de fîlm dikişîne!"

Derhênerê kurd Umur Hozatli mijara yekem fîlmê xwe yê metrajdirêj "Azadiya Wenda" bo Rûdawê vegot û da zanîn ku ew bi xwe di nava trajediya şer de mezin bûye. Fîlmê Hozatli atmosfera salên 90î ya ku bi kuştinan, girtinan, işkenceyan û tirsa endamên JITEMê ku di nava gel de kûr kiribûn, tîne ser perdeya spî. Hozatli destnîşankir ku ji ber kêmasiya butçeyê ew neçar maye fîlm di 17 rojan de bikişîne.

**Me bi salan we wek rojnamevanekî nas dikir, sedemên ku hûn karekî wiha bidin ber xwe, çi bûn?**

Li Tirkiyeyê hemû mirovên zana li ber rastiyên jiyanê dikevin bin barekî giran. Min tiştên ku di fîlmê Azadiya Wenda de vegotiye, bi salan e daye pişta xwe. Ango min hertim xwe di bin barê êş û bûyerên ku JÎTEMê, kontrgerilayê, dewleta kûr, Ergenekonê û zalimên din li dijî gelê kurd kirin, dihesiband. Piştê cihekî ev êş û var êdî zêde giran bûn. Min jî hêz da xwe û biryar da ku ez vê barê bi gelên Tirkiyeyê û dinyayê re parvebikim. Min vî karî jî bi hêza sînemayê ya ku xwe dikare bigihîne herkesî, pêkanî. Lewma fîlmê min Kayip Ozgurluk (Azadiya Wenda) li Tirkiyeyê tevlî sê festîvalên herî mezin bû û niha ber bi festîvalên navnetewî ve diçe.

**Ango we bixwe senaryo û çîroka film nivîsand? We qet sûd ji kesên din û çavkaniyên din negirtin?**

Belê min piştî xebateke dirêj û narîn senaryo nivîsand. Ji ber mijarek girîng e û behsa wendayan, kuştiyên kujerên wan ne diyar û kiryarên JÎTEMê dike, min nêzîka salekê çavkaniyên dewletê, yên sivîl lêkoland, min guh da îtîrafkarên JÎTEMê û piştî analîzên dirêj dest bi nivîsandina senaryoyê kir. Piştî ku nivîsandin qediya min senaryoyê da kesên ku mijarê baş dizanin, kesên di sînemayê de xwediyê ezmûn in. Wan jî xwendin û gelek tiştên girîng lê zêde kirin.

**We çima bi taybet ev mijar hilbijart?**

Tiştê ku Kurd piştî salên 90î dijîn trajediyeke mezin e. Ez jî di nava vê trajediyê de mezin bûm û bûm şahîdê wê, qurbaniyê wê û tohmetbarê wê. Hilbijartina min a yekem ev trajediya ku ez tê de mezin bûm, bînim ziman û di vir de jî derbeya taybet li JÎTEMê bixim. Dewletê li himberê gelê kurd tiştê ku hêza artêşê nekir, bi rêya şerê JITEMê bi rêbazên taybet meşand. Lewma JÎTEM tetikvanê şerê taybet e. Pêwîst bû ez behsa wê bikim.

**We di kişandina fîlm de ji ti dezgehek alîkarî standin?**

Min ji yek dezgehekî fermî yan jî ne fermî, şîrketekî ti alîkarî nestand. Min û hevalên xwe me bi derfetên xwe fîlm kişand. Pirsgirêka herî mezin a sînemaya alternatîf, sînemaya serbixwe butçe ye. Ev bû pirsgirêka me ya mezin. Ev jî bi xwe re çendîn pirsgirêkên din tîne. Ji ber vê ez neçar mam ku fîlm di 17 roja de bikişînim. Ji bo fîlmek sînemayê ne demeke normal e. Fîlmek di 17 rojan de nayê kişandin, divê neyê kişandin. Lê eger pereyê we tunebe, hûn ê bi vî rengî xwe ji mesrefên zêde xilas bikin.

**Hûn beşdarî 7 festîvalên fîlman bûn. Nêzîkatiya komîteyên festîvalan çawa bû ji bo fîlmê we?**

Fîlm li Tirkiyeyê beşdarî hemû festîvalên mezin bû. Min ev yek çaverê nedikir. Jiber ku li Tirkiyeyê meselaya kurd û mijara JÎTEMê hê jî mirovan diêşînin, min digot wê komîteyên festîvalan newêribin fîlmê me pêşkêş bikin. Lê ez şaş derketim. Li Tirkiyeyê mirov dikare bêje ku êdî komîteyên festîvalên fîlman ji mirovên wêrek pêk tên. Di hinek komîteyên festîvalan de ev fîlm zêde hatiye nîqaşkirin, ango pêşkêş bikin an nekin. Lê piraniya wan bi erênî nêzîk bûn û lewma fîlm di festîvalên mezin de hat nîşandan.

**17 roj ji bo kişandina fîlmek sînemayê têr nake. Lê eger pereyê we tunebe hûn ê bi vî rengî xwe ji mesrefan xilas bikin**




**Wekî we gelek derhênerên kurd ên din jî hene. Hûn hewldanên wan çawa dinirxînin?**

Beriya hertiştî dixwazim bêjim ku sînemaya kurdî êdî hêviyeke mezin dide. Hêvî ew e ku hevalên bi sînemayê re mijûl in pir enerjîk û xwedî biryar in. Ez xwe di qada şer de dibînim. Min biryara xwe daye ku sînemaya azad çêkim û ez piştgirî bibînim nebînim jî ez ê bi taktîkên gerîlla hîn fîlmên mezin û baştir çêkim. Dezavantaja min a mezin ew e ku ez bi tenê me. Lê ev e sînemaya azad û ez ê bazdana xwe ya azad bidomînim.

**Wê "Azadiya Wenda" kengê were sînemayên Ewropa?**

Wê di meha Îlonê de bê Almanya û çendîn welatê din ên Ewropa. Ez hêvî dikim ku gelê me yê li Ewrûpa ligel saziyên xwe eleqeyek baş bidin fîlm.

*Hevpeyvîn: Medya Denîz*

### Umur Hozatli kî ye?



Umur Hozat di sala 1969ê de li Dêrsimê hatiye dinyayê. Tenê dibistana seretayî xwendiye. Di sala 1992ê de dest bi rojnamevaniyê kir. Di rojnameyên wek Ozgur Gundem, Ozgur Ulke, Yeni Politika, Demokrasi, Ozgur Bakiş ve Yeni Gundemê de peyamnêrî, editorî û nivîskariya quncikan kiriye. Hozatli di sala 1997ê de bi navê "Serfiraz" çîrokek nivîsand û ev çîrok ji NÇM Xelata Taybet a Juriyê wergirt, di heman salê de xelata çapemeniyê ya Komîteya Çavdêriya Helsinki bi dest xist. Hozatli ji hinek kanalên televizyonê yên Tirkiyeyê, Îraqê û Ewropayê re bernameyan amade dike. "Kayip Ozgurluk", yekem fîlmê wî yê metrajdirêj e.

## Bêrîvan êdî li Tirkiyeyê qedexe ye

**Rûdaw –** Fîlmê Bêrîvan ku ji aliyê derhênerê kurd Aydin Orak hatiye kişandin, ji aliyê Wezareta Çandê ya Tirkiyeyê ve hat qedexekirin.

Fîlmê Bêrîvan qala bûyerên Newroza sala 1992yê li Cizîra Botan dike ku di encamê de 17 kes hatin kuştin û hejmareke zêdetir jî birîndar bûn. Yek ji wan kesên ku mohra xwe li bûyeran da, keça kurd Berîvan bû, ku di fîlm de jî tê nîşandan.

Ev fîlm par ji aliyê derhêner Aydin Orak ve hatibû kişandin û hefteya borî, piştî nedana destûra belavkirinê, ji aliyê Wezareta Çandê ya Tirkiyeyê ve hat qedexekirin.

## Kerkûk 4 tê amadekirin

**Rûdaw –** Heftiya borî kişandina rêzefîlmê "Kerkûk 4" xilas bû û niha di qonaxa montajkirinê de ye. Rêzefîlmê "Kerkûk 4" ji aliyê derhêner Nasir Hesen hatiye kişandin û qala çar neteweyên cihê yên Kerkûkê dike. Di demek kurt de rêzefîlm ji bo pêşkêşkirinê amade dibe.

## Nûbihar: Diyanet saziya herî faşîst e!

**Şengul Ogur**

Weşanxaneya Nûbiharê weke ku tê zanîn weşanxaneyeke kurd-îslamî ye, hetanî niha gelek berhemên wekî Mewlûda Kurdî, Meala Qur'ana Kerîm, Riyazûs Salîhînî li Kurdî wergerandine.

Weşanxaneya Nûbiharê wekî her carê, da ku beşdarî fuara ku îsal ji alî Diyanetê ve tê lidarxistin bibe, serî li fuarê da lê serîlêdana Nûbiharê nehat qebûl kirin. Piştî vê neqebûlkirinê Nûbiharê da xuyakirin ku wan wekî Weşanxaneya kurd-îslamî ji bo ku beşdarî fuara ku ji alî Diyanetê ve tê li dar xistin bibin, serî li fuarê dane û wekî her carê ev serîlêdana wan bi hêncetên ji rêzê nehatiye qebûlkirin. Di daxuyaniyê de ji bo raya giştî wiha tê gotin: "Di vê hengameya ku li Tirkiyeyê baweriya ku tiştên diguherin (anjî wê werin guherîn) û baştir dibe de, ku her tişt were guherîn jî em bawer nakin saziya herî faşîst, statûkoparêz a Tirkiyeyê biguhere. Heta ku Diyanet neyê guhertin, em bawer nakin ku wê tiştek biguhere û di serî de pirsgirêka kurd wê ti pirsgirêk neye çareserkirin."

Dara Mihemed Hewramî gazinc dike:

# Nizanim çima kanal stranên min ên berê belav nakin

▶Yekemîn stranbêj ez im ku stranên hewramî kiribe klîp.

▶Ebbasê Kemendî Ednan Kerîm û Hanî heqê stranên Hewramî dane wan

▶ Awaza \`Hermê û Heloje\` ya Ezîzê Weysî hewramî ye û negotiye

**Silêmanî (Rûdaw) –** Stranbêjê Hewramî Dara Mihemed Osman, ji kanalên televizyonê yên Başûrê Kurdistanê pir bi gilî ye ku guh nadin stranên resen. Ev hunermend xwe jî di nava wan paşguhxistiyan de dijmêre ku kêmtirîn stranên wî tên nîşandan. Dara Mihemed Osman dibêje, ew yekemîn stranbêjê hewramî ye ku klîbeke bi keç û xortan ji bo strana hewramî çêkiriye.

Dara sala 1956ê de li gundê Belxe li bakurê rojhilatê Helebçe jidayikbûye, li Silêmanî çûyê dibistana amadekirina mamosteyan û niha jî li Silêmanî dijî. Ew xwe weke kesekî "neteweperwer" dide nasîn û her çiqasî naxwaze qala xebata xwe ya siyasî bike, lê dibêje ku berê endamê Partiya Sosyalîst a Kurd PASOK bû û dostê PDKê ye: "Herkes bi rastî xizmeta pirsa kurdî bike çavê Dara Hewramî ye, bo min partîzanî ne girîng e, xizmetguzariya netewî li cem min berî hertiştî ye."

Berî 35 salan, Dara Hewramî bi milpêçeke hewramî li ser ekrana televizyona hingî ya Kerkûkê derket û strana Benaz Benaz got, ew dibêje ev stran bo kêşeya kurdî gotiye. Ew vêga jî ku navê televizyona Kerkûkê tîne weke "ezîz" binav dike û di wê baweriyê de ye ji kanalên televizyonî yên niha zêdetir xizmeta hunera resen ya kurdî kir.

Di hevpeyvîneke de ligel Rûdawê Dara got "Yekemîn stranbêjê hewramî ez bûm klîba straneke hewramî kişand û keç û xort tevî kirin, lê niha hest dikim televizyonên kurdî ez û berhemên min paşguhxistine. Ev kanal pir kêm girîngiyê didin hunera resen." Dara çîroka çawa bû stranbêj vedibêje: "Li xaneya amadekirina mamosteyan li Silêmaniyê di sala 1976ê de ahenga hevdunasînê hebû, mamosteyê me yê hunerê daxwaz ji min kir straneke bêjim, min jî weke derfet dît bi hewramî straneke bêjim, piştî vê ahengê kanala Kerkûkê daxwaz ji min kir strana ku min di ahengê de got, ji wan re tomar bikim. Ligel çend muzîkvanan me di 6 xulekan de stran tomar kir."

### Kî heqê strana hewramî xwariye?

Derbarê wan stranbêjên hewramî yên ku stranan bi zaravê soranî dibên, Dara got: "Divê Hewramî stranên hewramî bêjin, çimkî tenê Hewramî dikarin formuleya awaz û helbestên Hewramî bi ciwanî bihêlin."

Herwiha nêrîna Dara jî li ser wan stranbêjan heye, ku ne Hewramî ne û stranên hewramî gotine, sê kesan destnîşan dike û pesnê wan dide ku karîne rêza hunera hewramî bigirin: "Ebbasê Kemendî, Ednan Kerîm û Hanî heqê strana hewramî danê gava gotine, helbest û awazên wan pir bi başî parastine."

### Kêmineyî zîrve ye

Lê rayeke wî ya din li ser straneke Ezîz Weysî heye, ku vê dawiyê got û pir deng veda, ew jî strana \`Hermê û Heloje û Qeysî\` bû. Dara rexneyan li Ezîz Weysî digire ku di klîba strana wî de hatiye nivîsandin awaza kesekî ye, tevî ku awazeke folklorî ya hewramî ye: "Ew dibêje hermê û heloje û qeysî eminim Ezîzê Weysî, ev awaz ji folklorê Hewraman e min xwest ji Ezîz re bêjim lê bersiva min neda, min berê ev awaz di straneke de bo Ktv tomar kiriye."

Osman Kêmineyî ku weke "paşayê hunera hewramî" tê binavkirin, li cem Dara ji wê yekê mezintir e weke paşa binav bike û dibêje: "Osman Kêmineyî ji bilî ku zîrveya hunera hewramî ye, jî bo awazên hewramî dibistanek e. Min kitêbek li ser hunera wî nivîsiye, ji bo huner û edebiyata hewramî karekî mezin e."

### Paşguhxistî ye

"Nizanim çima kanal stranên min ên berê belav nakin, di bernameya yadî caran de jî stranên min naweşînin, ecêb e, nizanim sedemê wê çî ye. Straneke min heye di kanalên Yekgirtû de tê nîşandan, bo min cudahî tune her kanalek xizmeta hunera resenê kurdî bike, çavê Dara Hewramî ye û mala min e."

Dîsa pesnê kanala berê ya Kerkûkê dide, û vê kanalê weke xizmetkareke baş ya hunera kurdî li Başûrê Kurdistanê binav dike: "Di kanalên kurdî yên niha de 6 stranên min hatine klîpkirin, lê kanala Kerkûkê ya berê 5 klîp ji min re çêkiribûn, wê demê min stran ser pirsa kurd digotin li her çar parçeyên welat."

Dara dibêje ji xênî ku hunermend e, ew kitêb jî nivîsandine, herwiha nameya wî ya masterê li ser nameyên helbestî yên Mewlewî ye: "Min li ser huner û edebiyat û kelepora Hewraman 5 kitêb nivîsîne." Dara Hewramî niha albumeke nû ji 10 stranan amade dike.



Endamê Parlementoya Îraqê, Dr. Mehmûd Osman:

# Piştrast im ku hinek serkirdên YNK û PDK jî gendeliyê dikin

» **Beşek ji polîtburo û serkirdatiya YNK û PDKê rê li ber reforman digirin**

» **Amerîkiyan ti tişekî wiha ji me re nekirine ku em bêjin ger ew herin emê têk biçin**

» **Sunnî weke qehreman li tawanbarên Enfalê temaşe dikin**

» **Amerîkiyan tiştek ji bona cîbicîkirina madeya 140ê nekirine**



Endamê Parlementoya Îraqê Dr. Mehmûd Osman di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de Îtîlafa Fraksyonên Kurdistanî weke “hilweşiyayî” dibîne, ji ber ku “ji dema ku Hikûmeta Îraqê dirust bûye civînek jî nekiriye.” Derbarê rewşa Herêma Kurdistanê jî, YNK û PDKê weke berpirsiyarên vê rewşê dibîne û dibêje: “Beşek ji endamên polîtburo û serkirdayetiya YNK û PDKê rê li ber reforman digirin.”

**Rûdaw: Vekişîna artêşa Amerîka metirsiyê li ser Kurdan çêdike?**

**Mehmûd Osman:** Meseleya vekişîna Amerîka ji dêvla wê yekê ku pîşeyî be, pir hatiye siyasîkirin. Divê berpirsên ewlekariyê yên Îraqê raporên xwe yên pîşeyî li ber çavan raxînin bizanin dikarin ewlekariya Îraqê biparêzin, lê belê niha ti rola wan tune û siyasetmedar biryarê didin, ev karekî xerab e. Atmosfêreke wiha jî dirust bûye, kes nikare vekirî raya xwe bêje, Malikî jî nikare, ji Îran û Sedriyan ditirsin. Serkirdayetiya kurdî baş dibîne ew hêzên amerîkî yên ku li navçeyên veqetandî yên maddeya 140ê hene heya demeke din bimînin, ji ber hê alozî hene, tirsa wê yekê heye bi çûyîna wan re alozî dijwartir bibin. Lê amerîkiyan ti kêşe li navçeyên veqetandî çareser nekirine û tiştek jî bo cîbicîkirina maddeya 140ê nekirine, pir caran jî piştgiriya Ereb û Turkmenan dijî Kurdan kiriye. Yanî amerîkiyan tiştekî wisa ji me re nekirine ku em bêjin ger ew herin rewşa me têk diçe. Vekişîna Amerîkiyan meseleyeke îraqî ye. Kurd dibêjin ew ne dijî biryara mabûna amerîkiyan in. Eger biryara îraqî wiha be bejin herin, Kurd nabin rêgir, lê belê li navçeyên cihê nakokiyê bi dilê me ye bimînin.

**Kerkûk ji destê Kurdan derketiye?**

Eger maddeya 140ê bê bicihanîn, piştrast im ji destê Kurdan dernakeve, lê eger em nikaribin wiha bikin ku ev madde bê bicihanîn, jixwe em ê nikaribin Kerkûkê têxin ser Kurdistanê. Wê demê divê bi tiştine din biramin, divê plana me hebe ji bo bicihkirina maddeya 140ê. Me ti civîn li ser vê mijarê nekiriye.

**Kurd bi 19 şertan tevî hikûmeta Malikî bûn, ev şert hatine bicihanîn?**

Malikî îmzeya xwe avêt ser wan, lê ji bo bicihkirina wan şopandin pêwîst e. Eger Kurd wan neşopîne, ew jî wan bicih nake. Kurdan gelek xemsarî kirin û hêm neciviyane jî li ser vê xalê. Parlementer û wezîr û nûnerên din yên Kurdan li Bexdayê zêde haya me ji hev tune, zêde haya me û herêmê ji hev nîne, sedemên van jî hemû ew e ku em nacivin. Biryar bû ligel Parlementoya Kurdistanê kom bibin, lê kom nebûn. Min ji serokê Herêma Kurdistanê û serokkomar û berpirsên Kurd re pêşniyar kiriye, daku em hemû kom bibin û plana me hebe bo Îraqê, ka em çi bikin û çi nekin. Pêşbînî dikim meha 9ê hinek civînên bi vî rengî bên kirin. Nûnerê Herêma Kurdistanê li Bexdayê heye, heya vêga me nedîtiye. Şand ji Herêma Kurdistanê tên Bexdayê û haya me ji wan nîne.

**Nûnerê Herêma Kurdistanê li Bexdayê heye, heya vêga me nedîtiye. Şand ji Herêma Kurdistanê tên Bexdayê û haya me ji wan nîne.**

**Hevahengî di navbera nûnerên Kurd li Bexda de nayên dîtin. Çiqas dibe hûn neciviyane?**

Hevahengî di navbera lîsteyên kurdî de kêm, lê di meseleyên netewî de Kurd hevdeng in, di tiştên giştî de zêde nakokiyên me nînin. Nakokiyên di navbera aliyan de li Kurdistanê bandorê li ser karên me yên li Bexdayê jî dikin. Ji dema ku hikûmet dirust bûye Îtîlafa Fraksyonên Kurdistanî ti civîn li ser kêşe û çareserkirin û danîna plan û bernameyan nekiriye, îtîlaf hema bêje hilweşiyaye. Ji vê yekê jî PDK berpirsiyarê yekemîn e, ji ber ku piraniya kursiyan yên PDKê ne. Dr. Roj Nûrî serperiştiya wê dike, bi rastî xemsariyeke zêde ji aliyê Kurdan heye. Îtîlafa ku hewldanên zêde ji bo avakirina wê hatin kirin, niha hema bêje hatiye hilweşandin.

## Darvekirina tawanbarên Enfalê

**Lîsteya Îraqiye dijî darvekirina gunehbarên Enfal û yên din e. Tariq Haşimî ev ragehand. Kurd jî bêdeng in, ji ber çi?**

Ev kêşeyeke giring e, mixabin hatiye siyasîkirin. Siyasetkirin li ser xwîna xelkê tawan e. Sunnî dibêjin ew leşker bûne û tenê ferman bicih kirine, lê vana xelk qetlîam kirine, şer ligel welatekî din nekirine, bi ser de jî di wê dema dirêj ya dadgehkirinê de pêkut bûn li ser karê xwe û daxwaza lêborînê nekirin. Pêdagiriya hinek ji wane wê yekê îspat dike ku hê jî weke berê difikirin. Lewma li vir bêhna xetera hatina Baasiyan jê tê, daxwazkirina îdamnekirina wan neheqîkirin e li ser xwîna Kurdan. Eger du efseran îdam nekî, êdî xwîna 182 hezar Kurdan? Mixabin sunnî weke qehremanan berê xwe didin tawanbarên Enfalê.

## Federalî û herêma Sunniyan

**Herêma sunniyan wê li Îraqê dirust bibe?**

Kesî qala herêma sunniyan nekiriye ku dirust bibe. Herêm li gor sunniyan dirust dibe, li ser bingeha parêzgehê dibe, lê ne ku li ser bingeha mezhebî. Em dixwazin herêmeke din dirust bibe, daku federalî biçesipe, herwiha balansek hebe li ser bingeha federaliyê. Eger ti herêmeke din dirust nebe, metirsî li ser mabûna Herêma Kurdistanê jî dibe.

**Heya çiqasî sunnî ligel herêmekê bo navçeyên xwe ne?**

Sunnî weke gel ne zêde ligel dirustkirina herêmekê ne, herwiha di nav partî û siyasetvanên wan de jî ev nerîn kêm tê bihîstin. Piraniya wan dijî herêm in û ligel navendiyet û Îraqeke hevgirtî ne. Ev mesele jî bûye meseleyeke siyasî. Piraniya Erebên sunnî baweriyê bi herêm û federaliyê nakin, tenê dixwazin weke karta zextê bikar bînin.

**Şî`e ji federaliyê poşman nebûne?**

Niha ne zêde ligel in, Malikî û partiya xwe jî ne zêde bi federaliyê re ne. Şî`e jî ne weke berê bo federalî û herêmê germ in, ji ber ku niha desthilat di destê wan de ye.

## Opozisyon, desthilat û reform

**Opozisyonê civînên xwe ligel desthilatê sekinandin. Ev biryar li gor te çawa bû?**

Me hinek caran çûnûhatin di navbera herdu aliyan de kiriye, rûdinin, lê kêşe ew e bawerî di navbera wan de qels e. Hinek biryarên ku divabû bên bicihkirin, weke yên ku teqe li xelkê kirine, ewên ku baregeh şewitandine û kevirbaran kirine bên girtin, ev nehatine kirin. Herwiha brrîna butçeya sê aliyan jî hate ser. Lewma ev civîn hatin girtin. Min ji hevalan re jî got li Bexdayê, ku divabû opozisyonê di civîna pêncan de ji desthilatê re bigota heke ev neyên kirin, em êdî nacivin.

**Opozisyon dibêje niyaza reformê di desthilatê de kêm e?**

Niyeta reformê li Kurdistanê ji aliyê desthilatê pir qels e, li cîhanê jî wisa ye. Desthilat kêm reforman dike, ji ber gava pêngavekê bo reformê davêjin xelk daxwaza yeke din dike, lewra ditirsin desthilatê ji dest bidin. Herwiha bernameyên reformê zêde ne xurt in, tenê serokê herêmê nikare reformê bike, rola parlemenê tune, ji ber çi rola hikûmetê di reformê de tune? Karê wan çi ye? Vêca qala gendelî û reformê tê kirin, ki hatiye girtin? Ki ji kar hatiye avêtin? Ki hatiye dadgehkirin? Lewma baweriya xelkê bi reformê kêm e, divê komîteya serokê herêmê her hefte tedbîran îlan bike û karên xwe bi şefafiyet bike. Lewma vîn û pêkutî li ser reformê nabînim.

**Ger reform bi ciddî neyê kirin, wê çi biqewime?**

Xerab e, nerazîbûna xelkê zêde dibe û heye ku biteqe.

**Tê gotin hejmareke berpirsên bilind yên YNK û PDKê gendeliyê dikin û rêgir in li ber çêkirina reforman. Bi raya te divabû reforma serokê herêmê ji serî heya binî bûna?**

Piştrast im hinek berpirsên bilind yên YNK û PDKê di nava politburo û serkirdatiyê de jî gendeliyê dikin. Ev kesên wiha naxwazin reform bên kirin û rêgir in, ji ber ew jî dikevin bin wan reforman. Xelk jî bi giştî, eger te ji binî ve destpê kir zêde razî nabin, wê bêjin çima ji serî ve destpê nake.

***Hevpeyvîn:***
***Hêmin Baban Rehîm***



Rêvebira Firokexaneya Hewlêr, Telar Fayiq:

# Hinek hêlên asmanî dixwazin bên Kurdistanê, Bexda nahêle

▶Alman dibêjin ji bo eşkerekirina pasportên sexte pêwîstiya me bi pisporên kurd heye

▶Hejmarên turistan li Firokexaneya Hewlêrê ji hemû Îraqê bêtir e.

Rêvebira Firokexaneya Navnetewî ya Hewlêrê, Telar Fayiq dibêje ku niha hejmara turîstên bi rêya frokeyaneya wan seferê dikin, ji hemû firokexaneyên din ên Kurdistan û Îraqê bêtir in. Herwiha dibêje çendîn hêlên asmanî yên biyanî dixwazin Hewlêrê jî bixin nava lîsta serdanên xwe "lê Bexda pirsgirêkan ji wan re çêdike."

**Rûdaw: Hûn weke pisporeke warê firokexaneyan, we çavrêya wê yekê dikir ku firokexaneyek weke ya Hewlêrê wisa zû li Kurdistanê bê avakirin?**

**Telar Fayiq:** Ez heta sala 2006ê jî ne di wê baweriyê de bûm, ji ber ku min çendîn caran ji Londonê sefera Herêma Kurdistanê kiriye û carna ez 29 demjimêran di rê de dimam heta digiham Kurdistanê. Dema gotin ku ciyê dadana firokeyên leşkerî yê li Hewlêrê, wê bibe firokexaneye medenî, min bawer nekir. Ev ciyekî çol bû. Ev firokexane ji bilî ku avahiyê wê bi dizayneke xweşik hatiye avakirin, herwiha baştirîn xizmetgozarî û pêşketîtirîn amîrên dinyayê niha li Firokexaneya Navnatewî ya Hewlêrê hene. Teknolojiya ku niha li vir bikaranîn li ti firokexaneyeke din a Îraqê nehatiye bikaranîn.

**Hûn di wê baweriyê de bûn ku tu wê bibî rêvebira firokexaneyê?**

Piştî derçûna min ji zanîngehê di sala 1989ê de, ez li Bexda çûm kursekê û paşî min di hêla asmani ya Îraqê de kar kir û piştre jî bi rêya UN min li firokexaneyan kar kir, lê min qet bo wê yekê kar nekiriye ku karê firokexaneyê bibe karê min ê taybetî û ez bibim rêvebir. Xebata firokexaneyê cuda ye ji xebatên din, ji ber ku şêweyê karkirinê 24 demjimêrî ye.

**Çend karmendên firokexaneyên Kurd in?**

Bêtiriya wan Kurd in koreyî jî li cem me hene, me girêbesteke 5 salî bi wan re çêkiriye ku weke şêwirmend kar bikin, lê karê sereke, wek rêvebirina termînalê, çavdêriya rewşa hewayê, radar û hatin û çûyîn, dadan û firîna firokeyan û herwiha kontirolkirina cantayan ku karekî zêde zehmet e Kurd birêvedibin.

**Tê gotin ku Firokexaneya Hewlêrê ji aliyê pîsta dadana firokeyan li ser astê cîhanê pêncmîn e, gelo ji aliyê avahî çawa ye?**

Firokexane hene ku termînaleke wan bi qasî hemû firokexaneya Hewlêrê dibe, lê li gor xwe tiştekî me yê gelekî pêşketî û xweşik heye.

**Gelo li Îraqê firokexaneye din weke ya Hewlêrê heye?**

Ez nebawer im, ji xwe Firokexaneya Bexda hemû rojan tê nûjen kirin, Firokexaneya Silêmaniyê û Necefê jî gelekî ji ya Hewlêrê biçûktir in. Bi vê yekê jî Firokexaneya Hewlêrê dibe baştirîn û xweşiktirîn firokexane li seranserî Îraqê.

**Eger ligel turistên firokexaneyên Îraqê hevber bikin gelo hejmara turistên we çawa ye ?**

Hejmara turistên Firokexaneya Hewlêrê di pêşiya hemûyan de ye, sala borî 500 hezar turistên me hebûn, îsal jî heta niha hejmara turistên me ji hemû firokexaneyên Îraqê bêtir e.

**Kes heye ji firokexaneyeke din rizgar bibe û li vir hatibe binçavkirin?**

Nexêr, lê hin kesan xwestine ji vir seferê bikin û me ew girtine, her meh hejmareke gelek zêde ya xelkê tên girtin. Ez bi şanazî dibêjim ku beşa pasaportê li Firokexaneya Navnetewî ya Hewlêrê xwedî îmkan in û wan çendîn kes ji ber sextekirina pasaport û vizayan girtine. Alman jî şahidên zîrekiya karmendên me ne di warê pasportê de, ew dibêjin pêwîstiya me bi îmkanên kurdan heye ku kursan bo me vekin derbarê çawaniya eşkerekirina viza û psportên sexte.

**Firokexaneya Hewlêrê baştirîn firokexaneya li seranserê Îraqê ye û hejmara turîstên me ji hemûyan zêdetir e: Sala borî 500 hezar turîstên me hebûn**



Telar Fayiq

**Ji bilî Firokexaneya Hewlêr û Silêmaniyê, behsa avakirina firokexaneyekê bo Duhok û Kelar jî tê kirin. Gelo pêwîstiya Herêma Kurdistanê bi van hemû firokexaneyan heye?**

Ez nizanim ev tişt bi lêkolîn çêbûye yan na, lê wisa dixuyê ku hikûmet avakirina van firokexaneyan pêwîst dizane.

**Gelo avakirina firokexaneyekê li Duhokê ti tesîra xwe nabe li ser Firokexaneya Hewlêrê?**

Eger bi hemahengî ev kar bê kirin wê tesîrê neke, lê eger bi şêweyekî nerêkûpêk be û her firokexaneye bi awayekê be û li her ciyekî bê vekirin bêyî ku planeke demdirêj jê re hatibe kirin, wê demê bêguman wê tesîrê bike, lê divê em hevrikiya derve bikin. Loma ez dibêjim eger planeke stratejîk nebe ka seferkirin û bazirganîkirina di rêya wan firokexaneyan de wê çawa be, îhtîmale em vê bazarê wenda bikin.

**Gelo xelk bêtir sefera kîjan dewletê dikin?**

Bêtir diçin wan welatên ku pêwîstî bi standina vizayê nîne. Seferên Tirkiyeyê jî zêde ne û dewletên Ewrûpa jî, ji ber ku revenda kurd li wir zêde ye.

**Çend şirketên firokevaniyê niha di rêya Firokexaneya Hewlêrê re hatin û çûyînê dikin?**

14 hêl hene, herwiha ji destpêka Tîrmehê hêla Kibrisê jî dest bi seferên xwe kiriye. Hêla Atlas û Îraqê rojane ye, Turkish Airlines jî biryar daye ku seferên rojane bike, qewle hêla Asmanî ya Misrê jî di van nêzîkan de dest bi kar bibe.

**Xelk giliya giraniya bilêtan dikin.**

Ev pirs ne girêdayî firokexane ye, bilêt girêdayî şirketan e, bilêta Kurdistanê ji hemû ciyan girantir e, ew jî ji ber nebûna hevrikiya navbera şirketan e, ji bilî vê yekê jî eger ev nawçe ewletir bibe wê buhayê bilêtan jî erzantir bibe. Herwiha hin hêlên asmanî dixwestin bên Kurdistanê, lê Bexda pirsgirêk ji wan re derxist û ji wan re dibêjin divê hûn pêşî seferên Bexda dest pê bikin û paşî biçin Herêma Kurdistanê, ew jî hêl jî bi wê mercê razî nabin, ji ber rewşa ewlekariya Îraqê.

**Hûn çima hizra avakirina hêla Asmanî ya Nîştîmaniya Kurdistanê nakin?**

Niha pêwîst e behsa wê yekê bê kirin û min di çendîn civînan de jî behsa wê yekê kiriye ku divê em li Herêma Kurdistanê desthilata firokevaniyê avabikin.

*Hevpeyvîn: **Hêvîdar Ehmed***

“Generalê” dawî yê Amudê mir

# Li ser sînga xwe hemû serokên Kurdan tanîn ba hev



**Rûdaw –** Li Rojavayê Kurdistanê, bajarê Amudê bi nav û deng e. Hem di warê xebata xwe ya niştimanî û netewî de û hem jî bi laqirdî û henekên xelkê xwe, nemaze bi dînên xwe yên navdar.

Di dîroka Amudê de gelek dînên bi nav û deng derketine û her yekî ji wan gelek metelok û gotin û çîrokên ecêb û balkêş li pey xwe hiştine. Weke mînak, kî heye ku navê Îsmailê dîn nebihîstibe, yan Hêndero yan gelekên din ku di roman û çîrokên nivîskar û helbestvanên ji Amudê de hatine nemirkirin, nemaze çîrokên nivîskar Helîm Yûsiv ku di şanoya xwe de (Komara Dînan) û herwiha di romana Sobarto de bajarê Amudê şibandibû komareke dînan û behsa wan bi berfirehî kiribû bi hûnandineke edebî ya bedew. Herwiha Selîm Berekat jî behsa hin dînên deverê kiribû tevî Ehmed Husêynî, Ebdulletîf Husênî û hwd.

Heftiya borî (18.7.2011) dilê dînê Amudê yê dawî yê herî navdar Hewaro ku navê wî yê bi rastî Newafê Xibe Kafirî bû sekinî û ji jiyanê bar kir. Ew jî li goristana Amudê hat veşartin û tevî axa ku li ser weke dînekî hezkirî jiya, bû.

Hewar herdem bi cil û bergên generalên leşkerî derdiket, heya berî çend salan ku di qezayeke trafîkê de lingekî wî ji ber çû û li ser kursiyekî kêmendaman jiyana xwe berdewam kir. Lê dîsa heman cil û bergên leşkerî lê bûn.

Hewar li ser sînga xwe dîmenên sê serokên Kurdan kom kirin: Barzanî, Talabanî û Ocalan. Herwiha cil û bergên xwe bi ala kesk û sor û zer dixemiland. ‘General’ Hewar ji aliyê tevahiya rûniştevanên Amudê û Qamişlo dihat hezkirin û bê tirs û pirs hemû lîder û parçeyên Kurdistanê dikirin yek.



# Bavekî keça xwe bi otomobîlekê firot

Li Silêmanî, li taxa Rizgarî di xaniyekî de bûn. Her mêrekî li gel wê şa bibûna 150 dolar dida, nîvê bo wê, nîvê bo serokê gruba laşfiroşiyê.

**Dîmen Burhan** Silêmanî

Ferzane jineke kurd a bajarê Seqizê yê Rojhilatê Kurdistanê ye, niha di zindaneke jinan de li Silêmaniyê rojên xwe diqedîne. Ew keça mezin a malê bû û tevî xirabiya rewşa wan a aborî pir bi dixwest bibe pizîşk: “Em 5 xûşk bûn, birayên me nebûn, ez xwendekar bûm û min dixwest bibim diktor, lê ji ber destkurtiya malbata min bi neçarî min dev ji xwendinê berda. Êdî bavê min fikirî min bide mêr.”

Di temenê 19 saliyê de, yanî beriya 6 salan, bavê wê bi pêşniyarekê Ferzane vedicinqîne: “Keça min, tu bi xwe dizanî kurekî me tune da ku kar bike û em bijîn, tu keça min a mezin î, rica dikim bi wê mêrî re bizewice, belkî ew bibe kurê malê; kurekî bazirgan û qenc e.” Ferzane nexwestiye ew mêrkirina ji nişkave qebûl bike: “Lê bê havil bû, ji ber bavê xwe neçar bûm erê bikim.” Mêrê Ferzane bazirganê cilûbergan bû, lê Ferzane hê zû nas kir ku bi navê cilûbergan bazirganiya narkotîkan dike: “Kesekî kirêt bû, pir dewlemend bû, dewlemendiya wî wisa li bavê min kir min razî bike bo qebûlkirina wî.” Weke Ferzane dibêje li himber razîbûna wê: “Mêrê min otomobîlek ji bavê min re kirî. Bi kurtahî, bavê min, min bi otomobîlekê firoşt.”

Meha yekem bi xweşî qediya. Lê dûre Ferzane bêhêvî dibe, mêrê wê derengên şevê bi serxweşî û piştî teselebûna li gel jinan vegeriyaye mal: “Min xwest helwêstê werbigirim, xeyidîm û çûm mala bavê xwe, lê bavê min bi zorê min şand ba wî.”

Gava Ferzane vedigere, mêrê wê dîsa li ser kiryarên xwe pêkut bûye: “Min daxwaza cudabûnê jê kir. Gava fahm kir pêdagir im, sibê çû mala bavê min û otombîlek da bavê min û jê re gotiye ev diyariya min e û bi vî rengî devê bavê min dirût.”

Mêrê wê şevekê du laşfiroş bi xwe re tîne malê û derî li ser wê digire, mêr li gel wan tesele dibe tilyak vedixwin.” Dotira rojê hewl dide bireve: “Lê pir giran li min da. Bi şev jî du mêr ji min re anîn bi min re tesele bibin û ew bi xwe jî li gel jineke din mijûl bû, got êdî dikarî herî, min pakiya te kuşt.” Ferzane diçe mala bavê xwe û çîrokê jê re vedibêje: “Lê wî got here ba mêrê xwe.” Ferzane ji bavê xwe jî hêvîbir dibe û biryara reva berbi wî aliyê sînor dide.

Gava Ferzane di rojeke payîza 2006ê de diçe gerajê da ku berbi Îranê biçe, li wir kurekî Başûrê Kurdistanê ku keçek jî pê re bû, nas dike. Ev xort li pey nêçîrên weke Ferzane geriyaye, lê Ferzane bi xwe ketiye xefika wî: “Min nizanibû ev kur girêdayî grubeke laşfiroşiyê ye, li wir pir hevkariya min kir û ji min re got tu ne bi qaçaxî be nikarî bigihî wî alî. Li gel min were te dibim cihê tu divê.”

Ev kur wê tîne Helebce, lê wê dide destê jinekê bi navê Şûle: “Şûle ji min re got, were em heyfa xwe ji mêran hilînin. Ev gotin ne bi dilê min bû, lê ti çareya min nebû ji razîbûnê zêdetir.”

Şule jineke 40 salî ya Ereb bû, seroka grubeke laşfiroşiyê bû. Ferzane, Şûle û laşfiroşên din ên girêdayî grubê çend caran ketine dava polîsan: “Lê bi hewldana Şûle em zû dihatin berdan. Ji ber laşfiroş pir bi hêsanî ji zindanê derdikevin.” Roja 2ê nîsana îsal seroka grûba wan Şûle tê revandina, ew jî tê girtin: “Guman dikim merivên Şûle ev kar kiribin.” Di encamê de, Ferzane ji ber laşfiroşiyê hat girtin: “Wa niha ketime zindanê. Dizanim ku rizgar dibim, lê ew ji min re ne rizgarbûn e, ji ber ku her divê bikevim ser cadeyan. Li zindanê pir hewl didin me biguherin, lê mêran hinavê me şewitandine. Her çiqasî ez niha poşman im û dizanim rojekê yan malbata min dibîne û weke Şûle li min tê, yan li kolanekê min didin ber kêran.” Da ku Ferzende negihe çarenûsekî ji van herduyan, daxwazê ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê dike: “Kar ji me re bibîne da ku em û keçên din zêdetir nekevin rêyên wiha.”

# Realîzma derewîn di çênebûna dewleta kurdî de



Newzad Cemal

Di vê dema dawî de pirsa “dewleta serbixwe ya kurdî” careke din bû behseke giştî û babeteke germ a rojnamevaniyê. Di heman demê de bi bihîstina ragehandina dewleta “Başûrê Sûdanê” careke din hestên kurdan germ bûn û pirseke wiha hat bîra wan: ji ber çi em jî na?! Di demekê de ku gotara “dewleta kurdî” rastî belayeke giran û demdirêj hatiye, hizr û hesta me tije ye bi girêkên derûnî û hesta xwekêmdîtinê û di heman demê de derewkirinê jî ligel çarenivîsa xwe. Lewma tevahiya gotûbêj derbarê dewleta kurdî, ne li derveyî gengeşeyên sade û bersivên çesipandî ne. Ji siyasetvanên xebatkar ên kevnar bigire heya ronakbîr û xwendekarên kurd di bersiva vê yekê de ji ber çi Kurd ne xwediyên dewleta xwe ne û nikarin bibin dewlet, herdem sêlikeke amadekirî heye: sedem vedigere hinek faktorên realîst!

### Faktorên realîst ên xapînok

Sedemê erdnîgarî ku Kurdistan ne li ser deryayê ye. Sedemê dîrokî, Kurd herdem hatine dagîrkirin û çavkaniyên serxwebûnê ne di bin destê wan de ne. Sedemê olî ku bîr û baweriyeke kurdan a hevbeş heye ligel neteweyên serdest. Hoyê siyasî jî wek dorpêçkirina Kurdan ji aliyê dewletên herêmî ku bi rastî bi qasî behane û hincet in, ewqasî sedem nînin. Bi raya min ev bersiv qasî ku destçêkera neyarên kurd e, ewqasî jî ne encama ramana kurdan bi xwe ye. Bextreşî jî di wê yekê de ye ku Kurdan bawerî pê anîbûn vêga jî xwe qayîl kirine ku bersiveke ciddî û mantiqî ye. Lewma min ev bersiv weke derewa realîst binav kiriye, çimkî qasî ku realîzm tê de heye ku tu xwe bixapînî û ligel çarenivîsa xwe û nifşê bê, derewan bikî.

### Kozmopolitî û dilxelîna ji hizrê netewî

Gelek sal bûn ronakbîr û xwendekar û siyasetvanên me di bin bandora hizrê çep ê Sosyalîzmê dilê xwe ji hizrê netewî dixelandin bi behaneya ku hizrekî emperyalîst û nijadperestî û paşketî ye. Di demekê de ku ev çîn hergav ne di bin bandora edebiyata çep a navnetewî de bûn, lê kopiya hizrê neteweyî yên faris û tirk û ereban bûn û bi zimanê raman û nivîsîn û têgihiştina wan ji meseleyên çarenivîsî, lê baş bû piştî şikestina “bloka sosyalîzmê” li welatên Sovyet hejmareke zêde ya çepgiran dev ji van hizran berdan û hinekan badan bi aliyê hizrê netewî û niştimaperwerî de. Ji alîkî dî ve jî hizr û bîr û baweriyên olî jî li jêr gotara biratiya navbeyna bawerdar û çarenivîsa hevbeş de, hizrê netewî û fikirîna bi çarenivîsa serbixwe di dîroka bizava rizgarî ya gelê kurd de bipaş xist.

Lê piştî raperîn û şerê navxwe û vekirîna sînoran jî, careke din derbeyeke din li hizrê niştimanî yê Kurdistanî bi wê yekê tevahiya cîhangîrî û nemana sînoran û integrasyonbûna di bazareke navnetewî de, piştre rewşenbîr û xwendekar û hunermendên me fitilîne ser nêrîna kozmopolitîk-hevwelatiyekî cîhanî- û dilê xwe ji meseleya netewe û niştimanê xwe xelandin. Ji xênî ku ramana girêdana bi dewlet û sembolên kurdî ve ji ber şerê navxwe yê partiyên kurdî û di dawî de nebûna edaletî û wekheviya jiyana siyasî û civakî û aborî derbeya dawî li hizra bawerkirina bi welat dan. Lewma em dibînin roj li pey rojê girêdana niştimanî lawaz û kiz dibe, nemaze gava siyasetvan û serkirde ti giringiyê nadin vê mijarê, lê bêtir ji bo partî û berjewendî û kursiyên xwe kar dikin.

> **Sedemên çênebûna dewleta kurdî erdnîgarî, dîrokî, olî û siyasî ne**

Netewayetî weke hesteke kevnare lê hatiye, ji ber ku kesên ku sembola xebata rizgariya kurd bûn niha rasterast û vekirî yan sergirtî ev mesele danîne rexekî! Êdî cihê pirsiyarê ye ku Kurd yek e ji wan gel û neteweyên ku hê jî tiştekî bi dest neketiye bi riya xebata netewî, lê hizra netewî û niştimanî li cem bûye peyveke kevnare û pir cûtî!

### Nasyonalîzma berteng û giştî

Gava em qala dewleta kurdî dikin û divê sîfeta dewleta “Kurdî” di ser meseleya nijadî de be, yanî tenê `Kurd` yan `Kurdî` nebe bi wateya nijad, tenê olek jî serdest nebe, lê divê sîfeteke plural ya olî û kultûrî û siyasî hebe. Lewma nasyonalîzm bi wateyeke berfireh û giştî ew e ku hizra niştimanî ya hevbeş û çarenivîsa bihev re girêdayî li ser bingeha bi hevrejiyaneke rêzdar û hebûna mafan bi awayekî dadmend be; lewra gava em behsa dewleta kurdî ya serbixwe dikin, bi ti hawî nabe rêz li cudahî û firehiya civata Kurdistanî neyê girtin û li berçav neyê girtin.

### Çarçoveya Îraqê: Ne ku aştî lê hevrikiyeke demdirêj

Eşkere ye li Herêma Kurdistanê weke piraniya me dizane, piştî 2003ê kampanyayeke bi “Erebbûn” `ne ku Erebkirin` hate holê, ev jî ji ber vebûna bi rûyê Bexda û bajarên din de, heya wê radeya ku tu li bajarê xwe û paytexta Herêma Kurdistanê bo çay yan xwarin yan kirîna cilan, divê ligel karkerekî ereb bi zimanê wî bipeyvî! Ev newekheviya etnîkî û zimanî di navbera Kurd û Ereban de derdixe ku karker e û li vir kar dike û pêdiviya wî bi pere û hewandinê jî heye! Lê belê ewqasî jî piştrast e bi wê yekê ku Kurd Îraqî ne û zimanê dewletê erebî serdest e, lewra Kurdek dive bi zimanê erebî pê re bipeyve!

Balkêş e ku yek ji wan “realîzmên derewîn” ew e eger Kurdistan cuda bibe, şerê navxwe derdikeve? Di demekê de ku berovajiya vê gotinê rast e, ji ber ku bi hevrebûneke bi kotekî ligel Îraqeke tije kêşe û krîz, bê hebûna xwesteka serxwebûnê şîdetê dike, çimkî vîna bijartinê ya gelekî jê tê standin û dibe qurbanê ragirtina hevsengiya dewleteke binkeftî weke Îraqê.

Armanca vê babetê ew e ku pêdiviya me bi lêvegerîneke kûr di gotara “niştimanperwerî”, “netewe” û “netewayetî” û “dewleta Kurdî” de heye. Nabe herdem Kurd behaneyan bo nebûna dewleta xwe bînin bi navê hokarên realîst, lê divê Kurd derbasî qonaxekê bibin ku ji vê dewletê re îş bikin, ew jî ne bi hilgirtina dirûşm û bangewaziyên coşdar di medyayê de ye, lê fêmkirina koka dewletê weke awayekî din ê azadbûna mirovê kurd û di heman demê de weke corekî din ji mafê xwe yê mirovatî. Lewma redkirina ramana dewleta kurdî, lêdana li mafên nifşên dahatû ye!

---

# Mafê xwe birêvebiriyê û prensîba ”subsidiarty“



Bayram Ayaz

Demokrasî şêweyê birêvebirina civakê ye û prensibên xwe heye. Di demokrasiya klasîk de, rûmetgirtina prensibên cudahiya hêzan (dad-rêvebirî-yasadaner) û hilbijartinê esas bû. Niha, di çaxê demokrasiya modern de, rola aborîvan, medya û rêxistinên sivîl (NGOyan) jî êdî girîng e û di cîbecîh kirina demokrasiyê de hin prensibên nû peyda bûne. Ev pîvan, pirrengî û pirdengî (**pluralism**), beşdariya siyasî û civakî (**participation**) û derbarê xwe de li cîhê xwe biryar dan (**subsidiarty**) e. Demokratbûna pergalekî siyasî û civakî, bi van pîvanan tê diyarkirin. Tenê hebûna parlementoyê û hakiman û çêkirina hilbijartinê bi serê xwe ne bes in ku dewletek bibe demokrat.

Li Tirkiyeyê ezmûna demokrasiyê ji welatên Rojhilata Navîn pêşdetir e. Hilbijartin çêdibe, parlemento û dezgehên dadwerî hene, lê demokrasiyeka rêkûpêk, modern tune. Piştkuliya “demokrasiya” Tirkiyeyê di warê prensibên pluralîzm, participation û subsidiarity de ye.

Piştî Yekitiya Ewropa (YE) biryara berendemetiya Tirkiyeyê da (2004) dest bi muzakereyan kir, ji Tirkiyeyê hat xwestin ku kêmasiyên xwe li gor prensibên YE rast bike. YE dewletên berendam li gor krîterên Peymana Maastrichtê (1992) û Kopenhagenê (1993) amade dike. Wek mînak heta Macaristanê ji bo Qereçiyan (Roma, 2% ji welatiyan in) mafê perwerdê bi zimanê wan qebûl nekir, endametiya Macaristanê nehat pejirandin.

> **Di pirsa mafên etnîkî, zimanî, kulturî, olî û mezhebî de Tirkiye ditirse gav bavêje**

Em dixwazin bêjin, ev gavên ku Tirkiye wek “açilim” bi nav dike, pêdiviyên muzakereyên berendametiya YE ne. Xebatên ji bo Elewiyan, Patrikxaneya Ortodoks, Qereçî, Laz û Çerkezan, Suryaniyan, Ermenan û Kurdan, ev hemû “açilim” di çarçoveya pêşamadeyiyên berendametiyê de pêktên. Tirkiye di warê aborî, bazirganî/gumruk, keştûkal/zireat, veguhestina zanistî de gelek guhertin pêkaniye. Lê di mijarên maf û azadiyên kesayetî û kolektif de guhertinên pêwist hê pêk nehatine. Bi taybetî di pirsa mafên etnîkî, zimanî, kulturî, olî û mezhebî de Tirkiye qeviziye, ditirse gav bavêje. Tirsa Tirkiyê ya mezin mafê gelê kurd û Kurdistanê ye. Di vê meselê de dewlet û hikûmet gavên ciddî navêjin, demokrasiyê û krîterên YE paşguh dikin.

Prensîba subsidiarty di Peymana Maastrichtê, xala 3b, qisimê 2 de hatiye pejirandin. Wateya siyasî û huqûqî ya vê prensîpê ev e ku her komekî (civakekî) li cîhê xwe dikare derheqê pirsên xwe de biryara xwe bide, xwe birêvebibe. Yani ev prensip bingeha ademî merkeziyetê (decentraliyê) ye. Tişta îro DTK/BDP dixwaze, nefsa vî tiştî ye. Lê rayedarên tirk tore bûne, dinyayê xira dikin! Baş e, hûnê bi vî halê xwe çawa demokrasiyeke multi-etnîk li gor prensîbên YE becîh bikin? Brîna kûr ev e! Heta Tirkiye zihniyeta “tek tek”ê neterikîne, pêkvejiyaneka wekhevî û bi rûmet zahmet e. Em divê li ser daxwazên xwe yên rewa bi israr bin.

# Qirnî



**Prof. Dr. Med. Îbrahîm Guneş ***

Qirnî heywaneke ji cinsê kêzikan e û parazîteke xwînmij e. Li cîhanê 800 cûreyên qirniyan hene, hemû qirnî bi vîrûs in û nexweşiyê çêdikin. Ji wan qirniyên ku li Kurdistan û Tirkiyeyê hene bi wan re vîrusa kirima – kongo û Lyme Borrelîse, FME heye.

**Qirnî çi heywan e, li kû dijî, çawa zêde dibe û çawa xwe digihînin mirov û heywanan?**

**Prof. Dr. Med.Îbrahîm Guneş:** Qirnî ji cinsê kêzikan e û di nav çayir, çîmen, gîha, dar û beran de dijîn. Wekî tê zanîn ajal û heywanên malê jî di nava wan cîhê ku min anî ziman de dijîn û wan gîhayan dixwin. Wextê ku mirov û heywan di ber wan cihan de derbas dibin hingê qirnî xwe davêjin ber lingê wan û xwe wekî zelaqê bi wan vê dizeliqîne û xwîna wan dimije. Bi mijandina xwînê re li gor normaliya xwe 200 car mezintir dibe. Dema ku wan derdixin jî xwe davê erdê ew cihê ku xwe pê ve zeliqandibû, îltihab digre. Em ji vê cureya qirnî re dibêjin beza tukê (tîfê) û ev cûre jî vîrûs, bakterî, parazît, kurm, mantar û nexweşiyan çêdike û carna jî dibin sedema alerjî û felcê. Qirnî bi piranî di saldema bihar, havîn û payîzê de derdikevin. Belê cureyek ji qirniyan heye li Kurdistanê di nav pez û dewaran de di mehên zivistanê de, li cihê ku heywan lê dijîn hene. Ji ber ku qirniyên pez, dewar, kuçik, mirîşk û herwiha hemû heywanên kedî û yên berî hene.

**Jiber ku li Kurdistanê gîha, heywan û zibil pir e, qirnî jî zêde çêdibin. Piştî ku qirnî bi kesekî ve da 1-3 roj şûnde nexweşî derdikeve.**



**Zerarên qirniya ji mirova re çi ne?**

Wexta qirnî kesekî gezbike û bi wê qirniyê re vîrus hebe hingê gelek zererê dide mirov, ji ber ku li Kurdistanê bi hinek qirniyan re ew vîrusa Kongo heye ew jî nexweşiyê çêdike. Piştî ku qirnî bi kesekî ve da 1-3 roja şûnde nexweşî derdikeve; heta carna piştî 13 rojan nexweşî xuyadike û nîşanên bi vî rengî derdikevin: çerm xwîn dibe, ji bêvila wan xwîn tê, xwînê divereşin, ji destava biçuk û vajîna xwîn tê. Nîşanên cureya Lyme Borreliose jî xwe wisa nîşan dide: êşa mil, ling û hemû mûskel ew cihê ku gez kirine sor dibe, îltîhab digire û îştaha wan tê girtin. FME dema ku havîna zu menînoensefalît- ev şêweyek wek grîpê ye wextê dest pê dike mirovan heta mirinê jî dibe. Ji ber ku li Kurdistanê heywan, gîha û zibil pir e jî ber wê jî qirnî herî zêde ne. Dema em dinêrin li Ewropa vîrûsa Lyma Borreliose û FME heye li dijî FME derziya bi navê FSME pêwîst e herkesî ku li cihê gumana qirnî lê hene divê vê derziyê li xwe bide. Li hember Borreliyê û nexweşiyên din derzî tunin. Lê dema ku zû teşhîs bibe bi tedawiyê tê çareser kirin. Wextê ku ew jî dereng bimîne dibe ku mirov seqet an jî jiyana xwe ji destbidin.

**Zerarên qirniya ji mirova re çi ne?**

Di serî de dibe ku mirov derziya li hember FME li xwe bidin, kincê dirêj li xwe bikin, gora bixin piyê xwe û xwe ji cihê dar, ber biparêzin. Eger ku qirniya wan girtibe wextê ji canê xwe derbixin bila wan neperçiqînin, ji ber ku hingê ew vereşandina xwe û vîrusa xwe berdide canê wan. Divê qirnî bi mûçinkê bi aliyê rast û çepve bê zivirandin û wisa bê kişandin an jî dema derfet hebe biçin cem bijîşk. Dema ku mirov dereng neçe cem bijîşk ji sedî 90 vîrûs bi rêya dermankirinê derbas dibe û tehlûkeya jiyanê namîne.

***Amadekirin: Zelal Çelîk***

**** Prof. Dr. Med. Îbrahîm Guneş** ji Bakurê Kurdistanê ye û niha li Almanyayê dijî. Pisporê nexweşiyên hundirîn û pisporê jiyana tenduristiya xwarin û vexwarinê ye.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Nevîya Mîrê Botan, xanima Celadet Bedirxan. 2- Qarewar,tevlihevî, alozî (berepaş) – Navekî jinan, keça agir. 3- Destûra ku mirov dikeve welatekî, destûrname – Ji mêranî xistin, kujtina bizrê mêranîyê – Di dema êşê de tê gotin (berepaş). 4- Xirabûn -bi taybet ji bo trimbêlan tê bikaranîn- (berepaş) – Vexwarinek sereke – Fêkîyek tropîkal û xweş. 5- Xwarinek sereke – Çêbû, hat dinyayê. 6- Şên, geş – Nexêr, nabe. 7- Bêbext, xayîn, ne ciwamêr (berepaş). 8- Pirkirin, pêvekirin, dirêjkirin. 9- Xirabûyî, kurmîbûyî (bi taybet ji bo hestîyan tê bikaranîn) – Zik, çerm. 10- Çadir, mala koçeran – Raketî, dirêjkirî, dixewreçûyî.

**Serejêr:** 1-Bajarekî Kurdistanê. 2- Test û lêkolîna nexweşîya AÎDS ê – Dengvedan, zêdebûna deng. 3- Pîvandin, li ser mêzînê danîn. 4- Hal, pergal (berepaş) – Notayek (berepaş). 5- Bi Erebî "na" (berepaş) – Xelaskir, rizgarkir, kesê azad dike. 6- Tayê qalind û stûr – Navekî mêran, qaîl, dilxweş. 7- Zekem, sermagirtin, bapêş (berepaş) – Ehmeq, nezan, zirdîn. 8- Sebzeyek spî û bi bêhn – Gelek caran li şûna "min" tê gotin. 9- Bi Soranî "şand, bi rê kir" (berepaş) – Kesê ji Yûnanistanê (berepaş). 10- Şik, guman – Bi xwe de kir, gû kir. 11- Meha Newrozê (berepaş). 12- Hêjayî, giranbuhayî (berepaş). 13- Bi Tirkî "mirêk, eynik". 14- Nexêr, qebûlnekirin. 15- Bi Erebî "çav". 16- Li Iraq û Sûrîyê partîyek nîjadperest.



### Bersivên hejmara 105



## Gwîz şekir û kolesterolê kontrol dike

**Rûdaw –** Li gor lêkolîneke nû xwarina libek yan du lib gwîz alîkariya nexweşên şekir dike ku kontrola asta şekir û kolesterolê di xwînê de bike.

Lêkolînvanên Komela Çavdêriya Nexweşên Şekir di vî warî de nivîsîne, gava nexweşên şekir yên ji cora dûyemîn hinek xwarinên xwe guherîne ser nîv gwîzê hûrkirî di rojekê de astê kolesterol û şekir bi rêjeyeke berçav di xwîna wan de kêm bûye.

Lê nexweşên ku beşekî xwarina wan a rojane di her carekê de guherandine ser nanekî genimî, ev daketina rêjeya kolesterol û şekir di wan de nehatiye dîtin. Li gor lêkolînê di gwîzê de gelek şeklên dohn hene, lê ev dohn ji bo saxlemiyê qenc in û ji bilî ku metirsiya wan li ser nexweşiyên dil tune, xwedî gelek sûdên din yên saxlemiyê ne.





# Zebra xalxalî

Carek ji caran zebrayeke xalxalî hebû, ne wek zebrayên din spî û reş bû. Ji ber vê ji dema dihat xuya kirinê, zebrayên din pê dikeniyan û digotin "Haaaahaaaha....wey xalxalok hat..."

Vê rewşê zebraya xalxalî gelek dilgiran kiribû ew herdem difikirî ew xwe spî û reş reng bike, da ku weke zebrayên din bibe. Caraan pê cem zirafê, caraan pê ba deveyê û ji wan pirsî ku gelo ew dikarin alîkar bin û rengê zebrayê biguherin. Lê feyde nebû. Zebraya xalxalîn bin dilgiran bû, serê xwe şor kiribû û hema hema digiriya. Carekê fîlekî mezin di nêzîkî wan re derbas bû û zebra xalxalî dît û jê re got: "Way tu çiqas xweşik î, min tenê zebrayên reş-spî dîtine, qet zebrayên xalxalî nedîtine, tu tiştek taybet î di nav cîhana ajalan de, divê wan cihekî taybet bidin te." Fîlê zebra xalxalî da pey xwe û bi hevre çûn nav koma zebrayan, fîl li ser dikekî sekinî û ji wan re got: "Hûn vê zebraya xalxalî dibînin, rengê wê ji yê we cuda ye, ew bi vê cudabûnê xweşikiyek tevî cîhana ajalan kiriye, rengekî cuda daye koma me, ev tiştekî gelekî xweşik e."

Ji wir û wê da hemû zebra li dora zebra xalxalî kom bûn û bi çavekî din lê dinêrîn, xema henek pê dikirin, bi hev re dileyîstin û kêf dikirin. Zebraya xalxalî jî êdî bi cudabûn û xalxaliya xwe serbilind bû.






Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

Û وو



Tû توو

## "Elih" an jî Batman

Navê rastîn û destpêkê yê bajêr Batman bûye û paşê guhertinên zimanî çêbûne û bûye "Elih". Bajêr navê xwe ji "Çemê Batmanê" wergirtiye ku li nêzîkê bajêr diherike. Batman dikeve Bakurê Kurdistanê û di navenda bajarên Amed, Muş, Bedlîs, Mêrdîn û Sêrtê de cih digire. Devera Batmanê bi petrola xwe jî zengîn e û li Tirkiyeyê û Bakûrê Kurdistanê petrola herî zêde li Batmanê derdikeve. Ji ber vê çendê jî Batman navendek aborî ya girîng e. Herwiha bi xweşikbûna xwezayê û şûnwarên dîrokî jî, weke Heskîfê, devera Batmanê cihekî balkêş e.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafik